BasNûçe
HERDEM RASTÎ
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar:23 13-19 Cotmeh 2014 basnews.com

## Rênas Mîran
Bo muzîkê rihê kurdî divê
R16

# Kobanê li benda korîdorê ye




Di bûyerên ku bi protestoyên polîtikayên hikumeta Tirkiyê li hemberê êrîşên DAİŞ'ê û li xetereya kom-kujiya Kobanê dest pê kiriye de heya niha 36 kes hate qetilkirin. Bikaranînên rêveberiya awarte ku li welat tê jiyîn, bi banga Öcalan û HDP'ê ve çalakî bi rêjeyekî mezin sekini. Lihevxistinê di navbera DAİŞ'a ku ketiye di nav hinek taxên Kobaniyê û YPG'ê de berdewam dike. Rêvebirên PYD'ê ku banga lezgîn dikin, raya giştî jî li benda korîdorê ye ku ji aliyê Enqere ve bê vekirin.

Siyaseta Kurd, ji ber xetera komkujiya Kobanê û ji bo parastina bajêr dixwaze yekta alternatîfa korîdorekî li ser Tirkiye yê bê vekirin. KCK, PYD û Hewlêr ji bo vê yekê li ser Enqerê zextê dike. Barzanî jî, ji DYA'yê li hemberê DAİŞ'ê xurtkirina bombardimanê xurt û destur nedayîna dagirkirina Kobanê xwest. Di navbera PKK-PDK'ê de jî li ser mijara damezirandina hêzeke hevpar û şandina Peşmerge bo Kobanê peyman hatiye pêkanîn.
Rûpel 4-5

## Li ser sînor yekitiya netewî

Şandeyeke ku ji parlementerên Herema Kurdistanê pêk tê bi dax-waza ku derbasî Kobanê ya ku di bin êrişên DAIŞ'ê de ye bibin û hin lêkolînan bikin, bi parlementerên HDP'î û nûnerên KCD'ê ve hatin Pirsûsê. Şandeya ku bi hinceta ewlehiyê nikarî derbasî navenda Kobanê bibe, li ser sînor daxuy-aniyek da çapemeniyê û peyamên yekitiya netewî ragihand. Rûpel 06

## 'Sedsala 21. ya kurda ye'

Siyasetmedar û nivîskar İhsan Aksoy diyarkir ku bo kurdan êdî derfetên mezin derketine û di sedsala 21. de wê kurd di her qadê de bala cîhanê bikşînin, lê divê di nava hêz û partiyên Kurdistanî de lihevhatinek pêk bê û hemû kurd ji destkeftiyên Kurdistana Başûr xwedî derkevin. Aksoy, di derbarê jiyana xwe ya ku li sirguniyê der-bas bûye, salên xwe yên 80 û 90'î, siyasetên kurdan û rewşa rojhilata navin ya dawî de bi BasNûçeê re axivî. Aksoy got: Sedsala 21. ya kurdan e. Rûpel 10-11



## Serhildana li ser dîwaran

Di qadên legal û îllegalde de bi sprey û boyaxên rengorengo pêşî li dîwaran û hesinên trênan pişt re li her derê xêzkirina wêneyan bi wext re dibe binyada çandekê. Ev çand çandeke mûxalîf e. Graffîtî di salên dawî de li metropolên mezin belav dibe û piştgiriya dijberên serdestan dike. Rûpel 13

# Barzanî bo Kobanê bang li cîhanê kir

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî bo piştgiriya Kobanê bang li dewletên cîhane kir û piştî hevdîtina bi nûnerên Tev-Demê re jî bo ku hêzên Peş-merge karibin derbasî Kobanê bibin destûr ji Tirkiyeyê xwast.

Li gor agahiyên ku hatine bidestxistin, Barzanî serlêdana li gel Tirkiye ya ji bo derbasbûna Pêşmerge piştî hevdîtina bi nûnerên Tev-Demê re kir. Piştî ku PYD'ê piştgiriya Pêşmerge bo Kobanê qebûl kir, Barzanî li gel rayedarên Tirkiyeyê têkilî danî û ji bo derbasbûna Pêşmerge ya bi ser Tirkiyeyê serlêda. Lê ne zelal e da ku serlêdan bi awayekî fermî hatiye kirin an na.

Di civîna bi Barzanî re rêvebirên Tev-Demê Mihedîn Şêş Ali, Nesrîn Xanim, Aldar Xelîl û Abdulselam Ahmed cîh girtin û piştî civînê hat ragihandin ku nûnerên PYD'ê 'destûrdayîna bo derbasbûna Pêşmerge ya Kobanê' qebûl kirine. Barzanî piştî vê geşedanê, bo qewirandina DAIŞ'ê ku Kobanê dorpêç kiriye destûr ji Tirkiyeyê xwest da ku Pêşmerge karibe bi ser İpek Yolu re derbasî Kobanê bibe. Lê ji ber ku di warê bersivdayîna Tirkiyeyê de nezelaliyek heye, tê gotin ku ew serlêdan bi rêyeke ne fermî hatiye kirin.

Barzanî di heman demê de bo hevpeyma-niya navtenewî ku pêşangiya wê DYA dike jî bang kir ku piştgirî û midaxaleya wan ya ligel Kobanê bidome.

Serokê Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê Fûad Hûseyîn jî di derbarê alîkariyên Herêma Kurdistanê yên bo Kobanê de daxûyand û got ku ji destpêka êrişên li ser bajêr vir ve Serokatiya Herêma Kurdistanê di nava hewlên piştgiriya Kobanê de ye. Hûseyîn wiha domkir, "Birêz Barzanî di 19'ê cotmehê de bo piştgiriyê bang li hevpeymaniya navtewî kir ku ew Kobanê ji êrişîn terorî biparêzin û da zanîn ku heke qetlîamek pêk bê ew dê bê wateya qetlkirina hemû gelê kurd. Barzanî pişt re jî daxwaza êrişên esmanî û piştgiriya bo rêveberiya Kobanê kir."



Seyîtxanê Boyaxcî
**Dengbêjê keserên bê serûber** R06

Def / Erbane
**Dengê zikr û sermestiyê** R15

Pêşmerge lez da amadekariyên êrişan

# Pêşmerge bo Musilê amade ye

Memê Biwûkî

Hêzên Pêşmerge ku DAIŞ ji Kurdistanê derşistin, amadekariya operasyoneke berfireh ji bo Musilê dikin. Pêşmerge ku hefteyê borî Rabîa ji DAIŞ'ê rizgar kir, li hemberî herêmên k udi destê DAIŞ'ê de ne amadekariya operasyoneke mezin dike. Pêşmerge li aliyekî amadekariya operasyona bo Mûsilê dike û li aliyê din jî li gel egera biryara ku piştgiriya Rojava bê kirin din ava xebatan de ye.

Piştî ku êrişên destpêkê yên DAIŞ'ê bi temamî hatin şikandin, Pêşmerge li hemû eniyên şer DAIŞ qewirand. Bi bandora teşebbûsên dîplomatîk yên Serokê Herêmê Mesûd Barzanî ji hevpeymaniya navnetewî bi taybetî li Sûriye dest bi êrişên hewayî yên li hemerî DAIŞ'ê kirin û li Rojava jî ew êriş pêk tên. Herwekî din Barzanî bo ku Pêşmerge bikaribe derbasî Kobanê bibe daxwaza destûrê li gel Tirkiyeyê kir. Heya niha ti bersiv ji aliyê Tirkiye ve nehatine dayîn lê hemû hêz û partiyên siyasî yên li Kurdistanê û Pêşmerge di nêzikahiya ku piştgiriya çekî bo Kobanê bê kirin û Pêşmerge derbasî wir bibe de ne.





**Mesrefê koalîsyona navnetewî ji Kurdistanê**

Di vê navê de şandeyeke ku ji parlemenên Parlementoya Kurdistanê pêk dihat jî serdana Kobanê kir û wê di piştî vegerê raporekê di derbarê şerê li Kobanê de binivîse. Herwekî din jî li Kurdistanê alikariya însanî berdewam e û di heman demê de ji bo piştgiriya Kabanê çalakî têne lidarxistin. Tê gotin ku mesrefê êrişin hewayî yê hevpeymaniya nevnetewî ji aliyê Hikûmeta Başûr ve tê dayîn. Tê zanîn ku kordînatên DAIŞ'ê pêşmerge dide DYA û koalîsyonê. Lê ji bo dayîna mesrefên êrişên hewayî daxwiyaniyeke fermî nehatiye dayîn.

Em bi peyamnêrê DHA'yê Felat Bozarslan ku nêzî mehekê ye li Kurdistanê ye li ser rewşa eniyên şer û hevdîtinên wî yên bi siyasedmederan re axivîn. Bozarslan got ku; li hemû eniyan ewlekarî hatiye sitandin, alî psîkolojîk de jî serdestî heye û ger fermanek ji Pêşmergeyan re were, ew dikarin derbasî Rojava bibin û DAIŞ'ê ji wir derxin û di amadehiya operasyonek berfireh de ne ku hemû herêman paqiş bikin.

**Bi rizgarkirina Rabîayê re pêwendiya IŞÎD'ê ya Iraq-Suriyê hat qutkirin**

Bozarslan got ku; piştî ku Musil ket, Pêşmergeyan li ser tixûbê Kurdistanê xeta parastinê ava kirî ye û wiha berdewam kir: "Li vir amadekariyeke cidî tê kirin. Ji Kerkûkê hetanî Musilê û ji wir jî hetanî Şengalê amadehî tê kirin. Beriya çend rojan li Kerkûkê operasyon hat kirin, li Rabîayê jî hat kirin. Rabîa cîhê herî girîng bû bo DAIŞ'ê di warê lojîstîk de.

Li vê derê hin gund ketin destê Kurdistanê û pêwendiya DAIŞ'ê ya Iraq û Sûriyê hat qutkirin. DAIŞ li ser vê xetê neqla şervan û çekan dikir, bi vê operasyonê ev hat girtin. Herwekî din ew operasyonê bo ku rêyek bo Kobanê û Rojava bê vekirin jî girîngbû."

Bozarslan diyarkir ku Pêşmerge di serî de giringiyê ide ku xaka Kurdistanê paqis bike düre jî êrişên xwe bike û wiha domkir, "Çend roj berê me bi berpirsiyaran re hevdîtin kir, bi serleşkerê eniya Maxmûrê Sîrwan Barzanî re em axivîn. Wî got ku ew di destpêkê de hewl didin ku xaka Kurdistanê biparêzin û gundên kurdan rizgar bikin. Piştî wê ku ji parlementoyê biryar derkeve ew amadene bir bi Mûsilê herin. Hin rîskên çûyîna Mûsilê hene. Hin agahî hene ku DAIŞ'ê bombe xistîne bin pireyên li ser rêya Mûsilê. Divê pêşiyê xeta Şengal û Zûmarê bê paqişkirin dû re jî xeta Mexmûr û Hewlêrê. Lê Rêveberiya Herêma Kurdistanê pêşî hewl dide ku xaka Kurdistanê û xaka bi nîqaş ya xala 140. ku ne di bin desthilatdariya Kurdistanê de ne lê kurd li wir dijîn bê paqişkirin. Me agahî stend ku piştî wê bi artêşa Iraqê ve operasyona Mûsilê dê bê kirin."

**Amadehiya hareketeke mezin tê kirin**

Bozarslan wiha pê de çû; Niha li Kurdistanê pevçûnên dijwar tune ne û DAIŞ nikare wek berê bi qonvoyên mezin tevbigere, li hin cîhan jî operasyonên piçûk têne kirin. Zêdetir li eniya Celewle ya Kerkûkê pevçûn hene. Ew jî domdar nîne. Herî dawî PKK û Pêşmerge'yan li Kerkûkê operasyonek pêk anîn. Hat gotin ku ji bo sê gundên wir ziyanek mezin çêbûye. Li gorî ku ez dibînim bo operasyoneke berfireh amadehî tê kirin. Hukumeta Başûr naxwaze ku hêza Peşmerge bê belvkirin ji ber ku êdî sînorê Kurdistanê 1050 km bi DAIŞ'ê re ye.

**Bo Rojava amedekarî têne kirin**

Bozarslan da zanîn ku Pêşmerge li hemberî egera ku biryara çûyîna Kobanê bê girtin jî di nava amadekariyê de ye û wiha got, "Ji bo vê mijarê gelek nîqaş tên kirin. Bo çûyîna pêşmerge amadehiya leşkerî tê kirin. Bo ku Pêşmerge here wir tekane rê di ser Tirkiyê re ye. Gorî ku me bihîstî ye Barzanî ji Tirkiyê daxwaz kirî ye ku qorîdor vebe. Hevdîtinên ne fermî tê kirin. Wisa xûya dike ku rêyek din tuneye ku derbas bibin, ku herin hetanî cîhek dikarin herin. Ji Rabîayê çûyîn ne pêkan e.

Li gor me ji Wezareta Pêşemerge fam kirî ye amadehiyek heye. Ku Rêveberiya Herêma Kurdistanê bê herin amadene ku herin. Tê dîtin ku amadekariyên operasyona bo Musilê jî tê kirin û tê pilankirin ku bi temamî Musil bê rizgarkirin, lê diyar e ku ew operasyon dê bi Artêşa Iraqê re bi hevkarî pêk bê.

Di derbarê hebûna PKK'ê û YPG'ê de jî Bozarslan ew aghî da: "Min tenê hêza YPG li Rabîayê dît. Lê PKK li Kerkûkê heye. Min dît ku li gundê Baxda û navçeya Tavuk PKK tev Pêşmergeyan şer dike. Em dizanin ku li Kerkûkê du tabûrên PKK'ê hene. Hêza YPG'ê tenê li Şengal û Rabîayê heye."

## M. Barzanî: Çekên giran hîn negîhiştine Pêşmerge

Di vê navberê de Rawêjkarê Giştî yê Ewlehiya Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî da zanîn ku ew jî bo gelên cîhanê bi DAIŞ'ê re şer dikin û divê tank-top û firoke bo Pêşmerge bêne şandin. Barzanî ku di bernameyeke di derbarê serfirazîyên Pêşmerge yên di şerê DAIŞ'ê de ji aliyê BBC'ê de hate amadekirin de axivî û wiha got, "Her çend ku dewletên cîhanê behsa şandina çekên giran bo Pêşmerge kir jî, heta niha çekên pêwîst negîhiştine destê Pêşmerge. Bi alîkariya êrişên hewayî yên hevpeymaniya navnetewî û DYA'yê Pêşmerge cihekî wek Rabia ya stratejîk ji DAIŞ'ê rizgar kir. Peşmergeyên me li eniyan xwe feda dikin. Lê hîn jî çekên pêwîst negîhiştine destê me. Bo parastina xaka Kurdistanê pêwîstî bi çekên giran heye."



Kobanê:

# Egera komkûjiyeke giran rû da ye

Piştî ku li Kurdistana Başûr hat qewirandin, DAIŞ'ê vê carê berê xwe da warekî din yê kurdan û hemû hêza xwe li vir li dora Kobanê bi cîh kir. Rêxistinê bi çek û cebirxaneya ku ji Musilê bidest xistiye êrişên giran li hamberî Kobanê dan destpêkirin. Di dawiya çaremîn hefteyê êrîşan de hemû gundên derdora Kobanê ketin destê DAIŞ'ê û şer gihîşt navenda bajêr. Herwiha YPG bi çekên sivik, li gel DAIŞ'ê şer dike û hetani niha dora 400 endamên DAIŞ'ê hatin kuştin û bi dehan YPG/YPJ'iyan jî jiyana xwe jidestdan. Di şerê ku niha li kolanên Kobanê rû bi rû didome de bîlançoyeke giran derket holê û bo Kobanê rojên bi talûke destpêkir. Herwiha jî çar parçeyên Kurdistanê bi sedan ciwan jî derbasî Kobanê dibin. Wekî din jî li Kurdistana Başûr û Bakûr piştgiriya mirovî û dîplomatîk jî didome. Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ji Tirkiyeyê daxwaza dayîna destûrê kir da kû Pêşmerge bikare bi ser Tirkiyeyê re derbasî Kobanê bibe. Li qada navnetewî jî hewildanên dîplomatîk didomin. Hevserokê PYD'ê Salih Muslîm da zanîn ku pêywendiya van ya bi DYA'yê re didome. Hevpeymaniya navnetewî jî bi hêzên esmanî li dora Kobanê êrişî DAIŞ'ê dikin. Li bajarê ku ji aliyê DAIŞ'ê ve hatiye dorpêçkirin egera ku qetliyameke giran biqewime heye û bo vê jî ji her aliyên siyasî yên kurdan bang tê kirin ji bo raya giştî ya cîhanê.







**DAIŞ'ê beşek ji bajêr girt**

Hevserokên PYD'ê Asya Abdullah û Salih Muslîm di derbarê rewşa dawî de agahî dan rojnameya me. Abdûllah da zanîn ku şerê bi DAIŞ'ê re êdî li kolanên Kobanê didome û DAIŞ'ê beşek bajêr xistiye destê xwe. Abdullah diyarkir ku li gel berzbûna êrişên asmanî yên hêzên hevpeymaniya navnetewî, ji ber ku DAIŞ ji her aliyan çek û endamên xwe yên deverên din dişîne Kobanê erişên wan dom dikin, lê li gel van êrişên bi çekên giran YPG û YPJ berxwe dide û Kobanê diparêze. Abdullah desntîşankir ku DAIŞ ji 3 milan ve êrişên giran tîne ser Kobanê û wiha domkir, "Li dij van êrişan jî YPG û YPJ bi çekên sivik û yên normal hewl didê ku Kobanê biparêze. Ji ber qadeke berfireh di destê DAIŞ'ê de ye DAIŞ dikare hêzên xwe bi serbestî arasteyî derên din bike û bi vê serbestiyê DAIŞ dikare bi hêsanî hêzên xwe yên bajarên din ên ku di dest wê de ne arasteyê eniyên Kobanê bike. Ji ber van derfetên xwe her çiqas derbên giran bixwe jî DAIŞ li gel çekên giran, çekdarên xwe arasteyî Kobanê dike."

Di derbarê rewşa şerê li derdor û nav Kobanê de jî Abdullah wiha got, "Ji alî Minbijê, Reqqa, Cerablûs û Til Ebyad ve rojane alîkariyên çekdarî û yên din tên. Taxa Kaniya Kurdan, Taxa Botan û hin xetên li ser van taxan ketine destê DAIŞ'ê lê piraniya bajêr di destê YPG'ê de ye. Volkana Firatê ji bi hin hêzên xwe di berxwedana Kobanê de cih girtiye û li gel şervanên me gellek şervanên wan ên ku jiyana xwe ji dest dane jî hene."

**Li Taxa Kaniya Kurdan û ya Botanê şer dijwartir e**

Asya Abdullah da zanîn ku pevçûnên herî dijwar li taxên Kaniya Kurdan û Botanê rû didin lê li hemû eniyan şer berdewam e. Di derbarê encamên şer û bombebaranên hêzên hevpeyman de Asya Abdula got: "Agahî têne ber destê me ku bi sedan cenazeyên DAIŞ'ê ji Kobanê diçine bajarên din. Li gel windahiyên wan ê me kêm in lê çekên giran hevsengiyê têk dibe.

Êrîşên hewayî yên Amerîka û hevpeymanên wê sê çar roj in hin gurtir bûn. Em van êrîşên hewayî erênî dibînin lê ev têr nakin. Ji ber ku çekên DAIŞ'ê pir in, divê êrîşên pir mezintir pêk bên. Ger ku çekên DAIŞ'ê yên giran bêne bêbandorkirin wê YPG bikaribe li dij wê biserkeve. Ji ber bi çekên giran ji dûr ve êrîş dike jiyana gel jî dikeve xetereyê. Di taxên ku nêzî xeta sînorin û li taxên navendê sivîl hene. Beriya ku DAIŞ bikeve taxên ku ketin destê DAIŞ'ê, ji berê ve hatin valakirin. Bi çekên giran êrîşî xeta sînorê bakur jî dike. Car caran topên wan derbasî aliyê bakur jî dibin. DAIŞ, bi êrîşên çekên giran hewl dide ku li ser gelê me yê sivîl metirsiya komkujiyê çêbike lê vîna gelê me naşikê."

Di derbarê rewşa sivîlên ku Kobanê neterikandine de jî Abdûllah da zanîn ku bi ser Saziya Alîkariyê ya Kantonê alîkarî û organîzasyona belavkirina pêdiviyên gel têne bersivandin, lê belê derfetên vê saziyê jî pir kêm in. Abdûllah got: Elektrîk û ava bajêr hatiye birîn, ev demeke dirêj e jî ber ku ambargo heye Kobanê di mercên dijwar de ye. Pirsgirêkên xizmetên tendurustiyê jî hene. Derfetên dermankirin, emeliyat û tiştên din ên tendurustiyê kêm in, birîndar û nexweşên me hene û di nav vê bêderfetiyê de, li gor mercên xwe em hewl didin ku pirsgirêkan çareser bikin.

## Muslîm: Têkiliyên me bi DYA'yê re hene

Hevserokê PYD yê din Salih Muslîm jî diyarkir ku wi rêya kesên di navberê de ew bi DYA'yê re di têkiliyê de ne û bo ku bombebarana hevpeymaniyê firehtir bibe, hewildanên dîplomatîk didomin.

Muslîm di derbarê egera piştgiriya Başûr de jî wiha got, "Me gelek caran bang lı wan kir da ku alîkariya me bikin lê dibêjin astengiyên erdnîgarî rê nadin. Bo me jî Pêşmergeyan bêhtir çek lazim in. Heke ku çekên pêwîst bidin me, ji xwe em xwe diparêzin û ew bes e. Helbet ku bi ser Tirkiyeyê re çek bigihijin me hêsantir dibe lê bo gîhandina çekan rêya bi ser Serêkaniyê re jî dikare bikar bê.

Di derheqê ziyareta wî ya li gel Enqereyê de jî Muslîm ew agahî dan, "Di navbera me û Tirkiyeyê de car caran hevdîtin pêk tên. Di hevdîtina dawî de jî bo me gotin ku wê çi ji destên wan bê dê bê kirin. Lê ew gotin bi cîh nayên. Daxwaziya me ew bû ku alîkariyên ku ji bo Kobanê tên bi ser Tirkiyeyê re bê astengî derbasbin. Me xwest ku astengiyên li ber vê bêne rakirin lê ew daxwaz bi cîh nayê. Em ji bo her cûre alîkariyê amadene. Herwiha ji Hewlêrê jî kî bixwaze alîkariya me bike em bo wê jî amade ne. Tirkiye bo alîkariay Başûr jî astengiyan derdixe."

Muslîm wekî din ew agahî dan me: Ger ku çekên giran hebên ji aliyê Serêkaniyê jî YPG dikare ku bi berfirehî li DAIŞ'ê bide. Li Bakûr jî bo piştgiriya Kobanê çalakî lidardikevin û şiddet tê bikaranîn. Em bi ti awayî naxwazin ku halê şiddetê derbasî Bakûr bibe. Em bikaranîna şiddetê şermezar dikin. Lê niha herkes dizane ku pêkhatinên li Kobanê, li dijî îradeya gelê kurd pêk tên û kurdên Bakûr jî vê yekê hîs dikin. Hin kes dixwazin Kiryarên ku li Şengal û Musilê derketin holê li Kobanê jî bêne dubarekerin. Gelo piştî Kobanê wê dor were kîderê? Ew hemû geşedan mirovan dixe nava fikra ku gelo DAIŞ tenê bo kurdan hatiye damezrandin an na. Ji ber vê jî kurd bersiva xwe didin. Lê divê hemû çalakî li ser bingeha demokratbûnê bêne kirin. Lê mixabin kesên provokator di nava mijarê de ne û li gor berjewendiyên xwe tevdigerin. Em bo piştgiriya Peşmerge tu astengiyan dernaxin. Ger ku kî bixwaze li gel me li hemberî DAIŞ'ê şer bike, fermo bila bê. Lê em dibên bi taybetî çek lazim in bo me. Niha li Kobanê dora 10 hezar kes jî gel maye û bêyî wan jî endamên YPG/YPJ'ê di nava şer de ne. Herwiha sivîlên ku li bajêr mane jî bi çek in û ew jî di nava parastina de ne. Heke ku piştgirî bo Kobanê nayê dayîn, egera qetliyamekê heye. Banga me ev e ku herkes bo kobanê tiştekî bike.

# "Ji şîddetê re na ji çalakiyên demokratîk re erê"

Aziz Tekin

Di bûyerên çalakiyên bo piştgiriya Kabanê ku di bin dorpêça DAİŞ'ê de ye li Tirkiyê û Kurdistanê 36 kurdan jiyana xwe ji dest da. Saziyên sîvîl piştî bûyeran gotin ku; divê mirin, lînç û çalakiyên bê qontrol bên rawestandin û çalakî bi awayekî demokratîk bêne kirin.

HDP'ê piştî civîna xwe ya navendî ya di 7'ê Cotmeha 2014'an de daxuyaniyeke "lezgîn" weşandibû û wiha gotibû, "Bo astengkirina hewldana komkujiya Kobanê divê ji 7'a hetanî 70'ê saliyê gelê me bi tevayî derkeve kolanan, qadê hilde û tevbigere. Ji vê pê ve her der Kobanê ye. Hetanî dorpêça howane ya Kobanê bi dawî bibe ew wedixwînin ku bê navber berxwedan bê kirin" û piştî wê protestoyan dest pê kiribû.

Piştî daxuyaniyê bo protestokirina nêrîna Tirkiyê ya ligel Kobanê û bo piştgiriya Kobanê li bajarên Tirkiyê û Kurdistanê xwepêşandan hatin destpêkirin. Di van xwepêşandanan de di nava çar rojan de li Amedê 12, li Mêrdînê 6, li Sêrtê 5, li Dîlokê 4 kesan jiyana xwe jidestda û li bajarê Edene, Mûş, Wan, Êlîhê jî hin kesan jiyana xwe ji dest da. Di pevçûnên kolanan de bi tevahî 36 kesan jiyana xwe jidestda. Piraniya kuştiyan di pevçûnên di navbera HÜDA PAR û çalakvanan de jiyana xwe jidestda. Di pevçûnên Dîlokê de jî di navbera çalakvan û nijadperestan de şer derket û 20 kes birîndar bûn 4 kesan jî jiyana xwe jidestda.

Piştî xwepêşandanên; li Diyarbekir, Sêrt, Mûş, Wan, Êlîh û Mêrdînê qedexeya derketina kolanan hat ragihandin. Bi salan e ku leşker dernekitibûn kolanan lê bi wesayîtên zirhî li navenda bajaran barîqat girtin. Piştî ku di 9'ê Cotmehê de li Çewlikê, Alîkarê Midirê Ewlekariyê û qomîserek hat kuştin di navbera Dara Hênê û Çewlikê de 4 kes di erebeyekê de hatin kuştin ku hat îdakirin ku berpirsê vê çalakiyê ne. Piştî bûyerê Fermandariya Navendî ya HPG ragihand ku tu biryarek e wan ya çalakiyê nîne û bûyera Çewlikê çalakiyeke 'lokal' e.



**Di xwepêşandanên ku bi mebesta protestokirina şerê li Kobanê lidarketin de, li Tirkiye û Kurdistanâ Bakûr 36 kurdan jiyana xwe jidestda, bi dehan kes birîndar bûn û bîlançoyeke giran ya şewitandin û xirakirinê derket. Li Kurdistanê tank daketin nava bajaran.**

Li metropolên Tirkiyê jî bi rojan çalakî hatin lidarketin û bi dehan bûyerên lînçkirinê qewimîn. Piştî ku bûyer ji qontirolê derket Hevserokê HDP'ê Selahattin Demirtaş bi daxweza serokê PKK'ê Abdullah Öcalan li Diyarbekirê daxwaza bidawîbûna tundiyê û sikûnetê kir. Demirtaş diyarkir ku gel berteka xwe ya demokratîk nîşan daye û tu hewlên tundiyê nîşan nedaye. Demirtaş wiha got, "Di roja duyem de me bihîst ku kesên bi çek ên sivîl êrîşên çekî pêk anîne. Me hewl da ku em bertekên demokratîk yên gel bi awayekî rast qanalîze bikin." Demîrtaş got ku Öcalan bi peyamekê hemû alî vexwendine aramiyê bo ku kumkujiyek mezintirîn nebe. Tevî banga Demirtaş li Dîlok û Diyarbekirê bûyer dewam bû û 6 kesan jiyana xwe ji dest da. Di êrîşa Çewlikê de jî du jê polîs 6 kesan jiyana xwe ji dest da. KCK jî bi daxuyaniyekê xwast ku çalakî berdewam be û bi vekirina korîdora bo Kobanê rewş nerm bibe. HDP ji KCK xwest ku midaxîl be bo bûyerê da ku rewş aram bibe. Li herêmê çalakiyên şevê û temirandina lambeyan berdewam e.

Wezîrê Karên Navxweyî Efkan Ala derbarê bûyerê de daxuyaniyekê ragihand ku hezar û 24 kes hatine binçavkirin, ji vana 58 kes hatine girtin û di derbarê kesên din de lêkolîn berdewam e.

## Kurd, Kobaniyan weke bira dibînin

Serokê Baro ya Mêrdînê Prz. Azat Yıldırım jî ragihand ku li Mêrdînê rewş ber bi asayîbûnê ve diçe lê ewqas mirin dibin sedema ku gel xemdar bibe û li ser agir bimîne. Yıldırım bûyerên ku li Kerboranê qewimîne bibîr anîn û got li wir senaryoyeke wehşetê hatiye jiyandin. Yıldırım wiha domkir, "Di bûyerên wiha civakî de kîn a gel cihekî girîng dadigre û mixabin mirin çêdibin. Bandora bêdeng mayîna hukumetê ya li gel Kobanê piraniya sedema van bûyeran e. Li hen deweran xwepêşandan gihîştin asteke ku tu kes naxwaze û gelek kes mirin. Divê ew hêrs di çarçoveyeke demokratîk de bima. Di dawiya dawî de çavê cîhanê zivirî ser Kobanê û di vê çarçoveyê de çalakvan gihîştin armanca xwe jî. Ji ber ku gelê Kobanê bi temamî kurd e û yên li vir jî kurd in çavlirê bû ku encameke wiha derkeve. Ji ber ku yên li vir, xwedîderketina Kobanê weke wezîfeyekê dibînin û di dawiyê de wek bira dibînin."

Yıldırım da zanîn ku piştî bangawaziyan li Mêrdînê aqlê selim pêk hatiye û niha rewş normalîze bûye, saziyên fermî ku sê rojan girtîbûn hatine vekirin, heta niha tu dan û standinê edlî nehatine kirin. Yıldırım got wê Baro di derbarê bûyeran de xebateke berfireh jî bike.





Tahir Elçi


Raci Bilici


Azat Yıldırım



A.Faruk Ünal

**Parastina Kobanê berpirsiyariya ehlaqî û hiqûqî ya herkesî ye**

Serokê Baroya Diyarbekirê Tahir Elçi di derbarê bûyerên dawîn de ji BasNûçe'yê re daxwiyand ku piştgiriya gelê Kobanê mafê her Kurdistaniyî ye û parastina Kobanê ji rêxistinên wek DAİŞ'ê berpirsiyariya ehlaqî û hiqûqî ya dewlet û hêzên navnetewî ye. Elçi got, "Li gor qanûnên navnetwî parastina gelên wiha ku bi jenosîdê ve rû bi rû dimînin wezîfe ye. Ev di heman demê de berpirsiyariya ehlaqî û hiqûqî ye. Helbet Tirkiye bi vê herêmê re cîran e û kurdên li Tirkiyeyê di vê mijarê de gelek hestiyar in û pêwendiyeke xizmane di navbera wan de heye."

Elçi got ku di demeke ku Tirkiye bi kurdan re di têkiliyê de, ji ber wê jî bo ku Kobanê xwe biparêze hewceye ku Tirkiye alîkariyê bide. Her wiha divê kurd jî vê daxwaza xwe bi awayekî demokratîk ji Tirkiyê bixwazin û ya rast jî wiha ye. Elçi wiha domkir, "Ez wek xetere dibînim ku girse bê qontirol, nizanibe ku rewş bi ku ve diçe û bi awayekî tûndane derkeve kolanan. Tirkiye heq nake ku bibe Sûriye. Li Tirkiyeyê pirsgirêk hebin jî qanalên demokratîk dikarin têrî çareseriyê bikin. Ji ber vê jî bo ku ew geşedan zêde nebin û ev agir bê tefandin hevdîtinên xwe dikin."

**Bê qontroliya girseyê xeter e û di heman demê de jî tişteki bi talûke ye. Divê ev agir bê vemirandin û her kes bi aqlê**

Elçi diyarkir ku daxuyaniya HDP'ê ya "dakevin kolanan" heye û divê kesên ku van daxuyaniyan didin dawiya wê jî bibînin. Elçi waha berdewamkir, "Divê bihata zanîn ku girse hestiyar tevdigerin û car caran ser li tundiyê didin. Divê ji bo vê pêşîlêgirtinek bihata kirin. Rû bi rûbûna girse ya bi HÜDA-PAR û aliyên din re şaş û xetere ye. Divê HDP û HÜDA-PAR bi zanetî tevbigere. Dema girseya xwe derdixin kolanan hakimê wan bibin. Bi taybetî di çalakiyên girseyî de ji bingeha meşrû neşqite tundiyê."

Herwiha Elçi got ku peywira dewletê jî bê kêmahî lêkolînkirina bûyeran û dîtina berpirsiyaran e. Elçi desnîşankir ku wê ew weke Baro li Diyarbekirê bi İHD, MAZLUM-DER û Weqfa Mafên Mirovan ya Tirkiyê re li ser bûyeran raporekê amade bikin

**Divê xwepêşandan di çarçoveyeke demokratîk de bimînin**

Serokê MAZLUMDER'ê Ahmet Faruk Ünsal jî anî ziman ku mafê partî an jî saziyeke sivîl heye ku li ser hukumetê bo bandora ku qenaatek pêk bê heye ku çalakiyan bike, ew mafekî meşrû ye lê divê ew xwepêşandan nezivirên halê şîddetê û welatî nemirin, sazî û avahiyên raya giştî zirarê nebinin. Ünsal wiha domkir, "Em mafê xwêpêşandaniyê bi awayekî kategorik diparêzin. Heke ku hin kes bo hin mafan derkevin kolanan ew mafekî gerdûnî ye, mafê xwepêşandaniyê divê bê parastin lê ger ku ew daxwaz bi rêya şîddetê bê ziman ew nabe xwepêşandan. Ne tenê çalakvan, helbet divê hêzên ewlekariyê jî hessabin û şîddetê bikar nîn in."

Ünsal desnîşankir ku xaleke din ya ku cihê aciziyê ye jî ev e ku alîgirên HÜDA-PARû HDP'ê bêne hemberî hev û wiha domkir, "Me ew rastî berê jî dîtiye. Provokekirina protestoyên mezin pir hêsan e. Hêvîdar im ku protestokirin di vê astê de raweste û pêşdetir nece. Em bang li herdû aliyan jî dikin da ku bi îtina tevbigerin. Di vir de gelek berpirsiyariyên dewletê hene. Divê dewlet li cihên ku egera êrîşan heye hêzên ewlekariyê bi cîh bike û tedbîrên xwe bistîne."

**Di van geşedanan de berpirsiyariya dewletê mezin e. Le ya bi talûke ev e ku alîgirên du hêzên kurd bêne hemberî hev**

Herwiha Ünsal angaşte kir ku pêwistiya Kobanê bi alîkariyê heye, kesên ku derketine kolanan bo vê derketine û wiha dirêjî da axaftina xwe, "Kobanê bi awayekî mixtacê alîkariyê ketiye dafikê. Ew ne tiştekî ku bê qebûlkirin e. Divê ku li herêma me yek ket tengasiyê herkes alîkariya wî bike. Bi awayekî piştevanî nêzikahî divê. Ku wiha nebe, em neçar dibin ku ji kesên dest bi xwîn alîkariyê bixwazin."

## Sedema bûyeran polîtîkayên dewletê yên berê ne

Serokê Şaxa İHD ya Amedê Raci Bilici jî diyarkir ku sedema asta ku bûyer gihîştinê polîta û nêzikahiya dewletê ye û wiha got, "Bi van bûyeran polîtîkaya dewletê bêhtir xirab bû. Birîndarên ku ji Kobanê ten jî dibin mijara nîqaş û bazarê. Di rojên dawî de 200 kesên ku hatin hatine girtin. Li hemberî daxwazên kurdan yên însanî nêzikahiya dewletê naguhire û ji berê jî hişktir bûye. Bo derbasbûna şandeya Başûr jî destûr nedan. Ew hemû tişt nîşan didin ku polîtîkaya dewletê ya Rojava jî negurî ye. Nêzikahiya li gel pêvajoya çareseriyê jî di heman qonaxê de ye. Dibe bo dest dananîbin ser saziyan lê bi rêbazên derbeyê nêzikî mijaran dibe dewlet. Ew cihê fikara ye. Rê li ber bûyerên Kobanê girtin, nêzikahiyeke masumane ye. Mirov dikeve gumanan ku dewlet li hemberî Kobanê ewqas bêdeng e. Li gelek deweran çalakî didomin û li bajaran OHAL hatiye destpêkirin. Tank bi awayekî ku gel rehetsiz bikin li ser rêyan hatine bicîkirin. Li şûna peyama 'Du qat wê bersiv bê dayîn' divê hukumetê gavên erênî biavêtina. Li Kobanê tê xwastin ku qetliyamek pêk bê. Bo vê divê herkes hessa bûbûya. Lê tekane bersiv şîddet bû. Berpirsin dewletê bi xwandina heman metne gefan li gel dixwin û bûyeran berztir dikin. Ez ne di wê baweriyê de me ku bi vî awayî aştiya civakî pêk bê. Hêvidar im ku aştî pêk bê û pêvajo bi silametî bidome."

## Şandeya Kurdistanê çû Kobanê

# Li ser sînor yekitiya netewî

Besê Zin

Şandeyeke ku ji parlementerên Kurdistanê pêk tê bi daxwaza ku derbasî Kobanê ya ku di bin êrişên DAIŞ'ê de ye bibin û hin lêkolînan bikin, bi parlementerên HDP'î û nûnerên KCD'ê ve hatin Pirsûsê. Şandeya ku bi hinceta ewlehiyê nikarî dirbasî navenda Kobanê bibe, li ser sînor daxuyaniyek da çapemeniyê û peyamên yekitiya netewî ragihand.

Di şandeya ku ji parlemenên hemû partiyên Parlemena Kurdistanê pêk hat de; Amîna Zikrî (PDK), Saîd Masîfî (YNK), Aydin Marûf (Turkmenia Cphe), Mahmûd Omer (Goran), Ebdûrrehman Fariş Ebû Karwan (Hizbî Şuî), Ebûbekîr Helednî (Yek-Gurtî Islam), Soran Emer (Komala Islam), Yerwand Nisan (Nûnera Ermenîa), Şiwan Kaledzey (Bi Zud Neyey Islamî) û Baper Kamla Slûman (PKRK) cîh girt.

Ji ber ku li navenda Kobanê şer didome û derfeta hevdîtina bi nûnerên PYD'ê ve tunebû, şande li bakûrê Kobanê çavdêriya şer kir û piştre vegeriya Pirsûs a Rihayê. Di daxuyaniya ku li vir ji aliyê şandeyê ve hate kirin de, Hevseroka KCD'ê Selma Irmak û Hevseroka Kantona Kobanê Fewza Avdî jî amedebûn, û peyamên yekitiya netewî hatin dayîn.

Ji endamên Şandeyê Amîna Zikrî di derheqê ziyareta wan de bi BasNûçeê re axivî. Zikrî da zanîn ku wê piştî ziyareta wan raporek di derheqê çavdêriyan bê amadekirin û bo piştgiriya Kobanê wê xebat bêne kirin. Zikrî got divê hemû kurd bo Kobanê bi hev re têbikoşin û piştgiriya Kobanê ji hemû cîhanê ve bê kirin.

Parlementere PDK'ê Zikrî çavdêrî û nirxên xwe wiha bilêvkirin, "Dijminên gelê kurd bi vî şerî hewil didin ku kurdan ji hev dûr bixin. Lê belê wan bingeha yekitiya netewî bo kurdan avakirin. Ji Şengalê hetanî Kobanê şer didome û ew bû sedem ku hêstên kurdan ji partî û hizban derkevin û bo têgihiştineke netewî bibin yek. Emê piştî vegerê çavdêriyên xwe bi raporekê pêşkêşî parlemenê bikin. Di raporê de emê pêwistiya piştgiriya lojistîk û çekan jî binivîsin. Ji ber ku li hemberî DAIŞ'ê hêzek bo mirovahiyê şer dike, divê çekên wan ên giran jî hebin. Emê pêşniyarekê bikin da ku têkiliyên me yên diplomatîk jî bo Kobanê di dewrêkevin. Bo piştgiriyên bi her awayî çi ji destê me tê emê bikin. Nêzîkahiya tirkiyeyê ne diyar e û bo vê jî emê xebatan bikin. Ji ber ku tirkiye yek ji endamên NATO'yê ye divê bo ku ew jî bo Kobanê tiştekî bike, em di warê dîplomasiyê de bandorekê lê bikin."







Zikrî diyarkir ku Serokê Kurdistanê Mesûd Barzanî jî bo ku hêzên navneteweyî bêhtir li hemberî DAIŞ'ê Kobanê biparêzin di nava hewildanên girîn de ye û wiha domkir, "Bi hewildanên Serok Barzanî êrişên hevpeymaniya navneteweyî zêdetir dibin û li Kobanê jî li DAIŞ'ê didin. Bo ku cîhan bêhtir midaxilî Kobanê bibe mesaiyeke mezin dimeşîne. Em li Kobanê di nava hewildana ku bi nûnerên PYD'ê re jî hevdîtinekê bikin de bûn lê ji ber şer me nikarî. Niha Kobanê bi qetliyameke ve rû bi rû ye. YPG berxwedaneke mezin dide û gelê wir diparêze. Divê em hemû kurd û hemû hêzên kurd bo Kobanê zêdetir bixebitin û piştgiriya wan bikin. Bo her çar parçeyan niha derfeteke mezin derketiye ku kurd cara yekem ewqas digihîjin hev û rêya yekitiyeke netewî vedikin. Ew girîngiyeke dîrokî ye."

Zikrî di derbarê îddiaya ku meserfê hêzên esmaî yên hevpeymaniya navneteweyî ku li DAIŞ'ê didin ji aliyê hukumeta Başûr ve tê dayîn de jî got, "Heta niha wek parlementerekê agahiyeke zelal û raste rast di vê mijarê de neketiye destê min. Lê egereke bi vî rengî heye. Her wiha koordînatên di derbarê DAIŞ'ê de ji aliyê Pêşmergeyan ve têne dayîn. Îstihbarata ku digihîjî hevpeymaniyê bi ser YPG'ê ve digihîje Peşmerge û bi hêzên navneteyî re tê parvekirin."

Serokê Şandeya Parlemena Kurdistanê Ebûbekir Helednî (Yek-Gurtî Îslamî) jî di derheqê ziyareta şandeya wan de ew agahî dan me: Em bo piştgiriya Parlemena Kurdistanê derbasî Kobanê bûn. Herkes dizane ku rewşa Kobanê di xeterê de ye. Me jî ew rastî bi çavên xwe dît. Rojê krîtik bo Kobanê têne jiyîn û li wir şerekî pir dijwar didome. Heya ku çekên giran negiîjin YPG'ê, egera ku sivîlên li Kobanê rastî qetliamê bên heye û mezin e. Divê erişên hevpeymeniya navneteweyî zêdetir bibin û li Kobanê raste rast êrişî DAIŞ'ê bê kirin. Piştî em vegerîn emê wek şande raporekê binivîn û hemû rastiya Kobanê Tê de bi cîh bikin. Li wir niha mal bi mal, kuçe bi kuçe şer û pevçûn didomin. Emê rapora xwe pêşkêşî parlemenê bikin û pêwistiya şandina çekên giran bo Kobanê bixin rojeva parlemenê. Ziyareta me wekî din jî di warê yekitiya netewî de jî girîng e."

### 'Bo ku Kobanê neveke çekên giran divê'

Parlementerê YNK'ê Said Masîfî jî da zanîn ku ew bo şopandina rewşa Kobanê hatine û wiha got, "Bi qasî ku me dît, şert û mercên Kobanê di rewşeke giran de ne. Li hin deran alên DAIŞ'ê xuya dibin. Bo ku Kobanê nekeve destê DAIŞ'ê pêwistî bi çekên giran heye. Bajar bi 3 aliyan ve di bon dorpêça DAIŞ'ê de ye. Divê Tirkiye jî sînorên xwe ji derbasbûna çeteyan re bigire. Divê hemû hêzên kurd bo Kobanê bibin yek."

### YPG'ê rûmet da gelê kurd

Di vê navberê de sandeyeke Parlemena Kurdistanê li gel nûnergeha PYD ya Silêmaniyê serlêdanek kir. Şandeya ku ji Serokê Parlemenê Yûsif Mihemed Sadiq, Dr. Şêrkê Cewdet, Omer Eynayet û Şêrko Mihemed Emîn pêk dihat bi bi Berdevkê PYD yê Kurdistana Başûr Xerîb Hiso û Berpirsê Têkiliyên Derve yê PYD Newdîn Yûsif re civiya. Mihemed wiho got, "Berxwedana bê hempa ku YPG/YPJ li Kobanê dide û serhildêriya wan rûmetê dide gelê kurd. Ew zêdetirî mehekê ye ku bi qehremanî li ber xwe didin û sekna wan li cîhanê rûmeteke mezin dide gelê Kurdistanê."

## Mülkiye Birtane: Hatina şandeyê bo yekitiya netewî girîng e

Parlementera HDP'ê Mülkiye Birtane jî hatina şanedaya Parlemena Kurdistanê weke derfeta yekitiya netewî bi navkir û diyarkir ku piştî rapora ku wê amadebikin, girîngî û lezgîniya piştgiriya Kobanê wê bê rojeva Parlemena Kurdistanê. Birtane wiha got, "Heya niha Hukumeta Kurdistanê di warê lojistîk û mirovî de piştgiriya Kobanê û Rojava dike. Lê ji ber ku niha rewşa Kobanê di xeterê de ye hatina şandeyê girîngtir bû. Parlementerên Başûr hatin û rewşa Kobanê di cîh de dîtin. Daxwaza wan jî ya me jî ew e ku bo ku çekên giran bigîhijin Kobanê korîdorek bê vekirin û hevpeymanî êrişên xwe zêdetir bike. YPG bi çekên sivik, li hemberî DAIŞ'ê ku di dest de çek û cebirxaneyeke giran heye şer dike. Divê herkes hesabên din dêyne aliyekî û li ser yekitiya netewî tevbigere. Bo vê jî hatina şandeya Kurdistanê bi qîmet e. Ji ber ku bêyî Tirkiye rêyeke din nîn e, divê hukumeta Başûr li ser daxwaza xwe ya li gel Tirkiye bandora xwe girantir bike û bo vebûna korîdorê di warê dîplomasiyê de bêhtir di têkiliyêkeve.



# Edebîyat vatiş nîyo teswîrkerdiş o

Roşan Lezgîn

Hesen Dilawer Dêrsimî (Hasan Alkış) hepisxane ra mi rê kitabê xo Deyndar sey dîyarî şawito. Ez ey rê zaf sipas kena. Seba ke hepisxane ra ameyo, mi sey hedîyeyêka pîroze xo het sevekna û bi heskerdiş dest bi wendiş kerd. Mektuba ke mi rê kitabî reyde şawita de vano "Biwane û ser o binuse." Ez do binusî la keyfê Hesenî nuştişê mi rê yeno yan nîno, a nuqta meçhul a!

Kitab 140 rîpelî yo û Weşanxaneyê Vateyî ra Îstanbul de 2014 de çap bîyo. Ez nêzana nuştoxî destpêk de senî nuşto, çiqas redakte bîyo la ziwanê xo hende xirab nîyo labelê baş zî nîyo.

Ez wazena xeletiyanê ziwanî ra çend nimûneyan bidî û bivîyarî. Mesela, vano "Hewldayena domanan tayê encam zî da." (r. 69) Tiya de hîna zaf "encamdayîş" bala mi ant, mi gore no qalib tam tirkî yo. Yanî "sonuç vermek". Ancî vano "Embaz Husên, nêzdîbîyayîşê ma bi dînî, ti zanenî." (r. 72) Yanî tîya de "nêzdîbîyayîş" herinda "yaklaşım"ê tirkî de şuxulnayo la çi heyf ke "nêzdîbîyayîş"ê ma a mana de nêbeno. Vano "Ez wazena parêznayîşê xo yê sîyasî bikera." (r. 85) Bin de vato "paraznayîşê xo". Ancî vato "greva vêşanîya bêdeme" ke mi sey "zamansız açlık grevi" fehm kerd. Hewna "babete bedelnaye (r. 96)", "babed xelasnaybî (r. 97)" yani "konuyu değiştirdi", "konuyu geçmişti"yê tirkî yê. "Zerrîya to de persgirekode muhîm esto." (r. 98) Tirkîya ci sey "Gönlünde/yüreğinde önemli bir sorun var." fehm beno. Kirdkî de "zerrî" hîna zaf manaya razber de la "qelb" manaya şênber de ya. Ancî zerrî de persgire beno, ez bi xo nêzana. "O wext persgirek çin o." (r. 102) Yani "O zaman sorun yok." "Eke binê nê şertan de hepisxane de bêro girewtene... (r. 126)" Mi qet nêdîyo ke kurdkî de bin ya serê şertan estbîyo.

Bi nê çend nimûneyan zî aseno ke însanê ma gama ke ziwanê xo qisey kenê, tirkî fikirîyenê. Bi mentiqê tirkî kurdkî nusenê yan zî qisey kenê. No çî zaf zerar dano ziwanê ma. Mevajîn ke xebata nuştekî de, edebîyat de nê hawa xeletî bibê, xora êdî keyeyê ziwanê xeripiya!

Kitabê Hesenî Deyndarî ser o îbareyê "roman"î nuşte yo. Ez bi xo zaf hes kena ke edebîyatê ma pêt bo, xurt bo, aver şiro; şîîr, hîkaye û romanê ma zaf bê. La herçiqas nika new kitabê kirdkî sey roman bihesibîyê zî mi gore hema zî kirdkî de roman çin o. Belkî mîyanê ê bînan de tayê estbê ke merdim zor bido xo vajo "roman" ê la kitabê Hesenî roman nîyo. Çîyê ke Hesenî kitabê xo de nuştê, eger rasterast sey xatirayanê xo, sey cuya xo ya şexsî û malbatî, bi fekê xo, bi terzê bîyografî û bi hawayêko realîst binuştêne, hîna meqbul û erjaye biyêne. Mesela, behsê cuya dewa xo bikerdêne, behsê zîyar û dîyaranê ê doran bikerdêne, behsê edetan û baweriya elewîtîye bikerdêne, zaf zaf baş bîyêne.







Seba ke bi fekê kesê hîrêyinî çîyanê ke o zano, o şinasneno xo rê qisey kerdo, ancax yew eqrebayê ey, ma vajin birayê ey biwano, fehm keno ke o ha se vano. La wendoxî tam fehm nêkenê. Mesela, vano "Vewre wexto ke bîyêne kurşe, o çax domanan xo germ piştêne têra, tawik, kayix, naylon ûsb. girewtêne şîyêne Dîyarê Qîrî, uca ra xo verdêne ra, hetanî cêr xîj bîyêne ameyêne." (r. 18) Sey wendoxêk mi fehm kerd ke "Dîyarê Qîrî" yew cayo berz o, la verê çimê mi de manzarayêk nêvirazîya. Ancax dewijê Hesenî biwanî, zanî o ha se vano. Ancî behsê "Goşkar Babayî" keno, ez tey vejena ke yew zîyareta elewîyan a la beno ke sewbînanwendoxî qet fehm nêkerê. Çunke metn de derheqê Goşkar Babayî de melumat çin o. Mesela, Peter Willy gama ke behsê Diza Alamutî keno, verê çimê wendoxî de yew sîluet beyan beno. La qiseykerdişê Hesenî de merdim ne Dîyarî Qîrî vîneno, ne Goşkar Babayî ne zî sewbîna cayan.

Kitabê Hesenî de meseleyî heme wina ser ra, qewlê tirkan ra "kestirmeden ve üstten" qisey benê ke hişê merdimê de tu teswîrêk peyda nêbeno. Mesela, wina vano: "Husên bi rojan îşkenceya girane ra vîyart. Peycû vejîya mehkeme, savcî û hakîmî derheqê ey de qerar girewt. Ereba polîsan o berdêne hepisxane. Wexto ke amayî nêzdîyê hepisxaneyî û hepisxane dûrî ra asa, yew polîsî bi destê xo hepisxane nîşan kerd... (r. 77)" Ez zor dana xîyalê xo ke nê qiseykerdîşî ra çîyê fehm bikerî, la tena eşkena destê polîsî bivînî ke cayêk îşaret keno. Êyê binî nênê verê çimê mi, xeyalê mi de nêvirazîyenê. Husên bi rojan îşkence ra vîyarto, mehkema bîyo, qerar gêrîyayo la ez tu çîyêk nêvînena. Husên dûrî ra hepisxaneyî vîneno la ez nêvînena. Wendoxî senî û kotî ra bizanê ke "îşkenceya girane" çi ya?

Qiseykerdişo edebî wina nîyo! Edebîyat ganî wisa teswîr bikero ke wendox bi xo bivîno çîyo ke beno îşkence yo, hem zî îşkenceyo giran. Mesela, Aleksandr Soljenitsin kitabê xo "Один день Ивана Денисовича" (Cuya Ivan Denisoviçî ra Rojêk) de behsê rojêka mehkumêk ke kampa xebate ya Yewîya Sovyetan de keno. Gama ke merdim kitabê Aleksandr Soljenitsinî waneno, wendox zî Ivan Denisoviçî reyde a kampe de ciwîyeno.

Hesen kitabê xo de, haydî ma vajin "roman"ê xo de, vano: "Hepisxane hem cayê çînbîyayîşî hem cayê tênabîyayîşî hem zî cayê xoverdayîşî yo. Seba ke merdim hemver serdestan xo bipawo ganî merdim xo ver bido. Xoverdayîş bi beden, bi fikir, bi ruh, bi bawerî, bi ciwîyayîşî êno ware. Êyê ke kewenê hepisxane na rastîye musenê. Gorê na rastîye xo amade kenê ke do bişikîyê linganê xo ser o vinderê. Ê ke xo nîya amade mekerê do bikewerê." (r. 84)

Nê vateyî çiqas gird û bidîa benê wa bibê, muhîm nîyo! Çîyo muhîm no yo, eke merdim nameyê wendoxan ser o hetê edebîyatî ra biewnîyo, çi heyf ke wendox tu çîyêk nêvîneno û ci ra nêmuseno.

Vano "Hêrişê hepsîyan kerdiş tu wext kêm nêbîyêne. Demê êrişî de gardîyan û leşkeran îşkence bi înan kerdêne. (r. 91)" Ez wazena bizanî ke senî hêrişê hepsîyan bîyêne, gardîyan û leşkeran senî îşkence kerdêne? La ney, tu çîyêk nêkeweno verê çimê wendoxî. Edîb, o yo ke bîyenan sey manzara teswîr keno, nîşan dano. Muhakeme û qerar paweyê wendoxî verdano. Yanî ti bîyene nîşan bide, wendox bi xo tey vejeno ke "hêriş" çi yo, "îşkence" çi yo. Ancî "bi beden, bi fikir, bi ruh, bi bawerî xoverdayîş" çi yo, wa wendox bi xo bivîno. Mesela, behsê "grevê vêşanîye" keno la hîsîyat û xeyalê wendoxî de tu çîyêk nêvirazîyeno. Oxro ke edebîyat de, gama ke behsê grevê vêşanîye beno gereka wendox bi xo zî vêşan bibo.

Neke tena Hesenî de, zafê kesan de wina yo. Edebîyatê ma de no hawa qiseykerdiş rengêko sereke yo. Yanî vatiş esto la teswîrkerdiş çin o! Edîbê ma bi xo vanê, bi xo tesbît kenê, bi xo qerar danê. Senî? Mesela, edîbê ma vanê "Zerîfa ciniyêka zaf rindeke bî, zaf birehm û şefqet bî." La wendox nê çîyan nêvîneno. Oxro ke ganî edîb Zerîfa wina nîşan bido, wina teswîr bikero ke wendox bi xo bivîno û qerar bido ke "Zerîfa ciniyêka zaf rindeke, birehm û şefqet" a. Eke edîb vajo, no nêbeno edebîyat. Çîyo ke edîbê ma kenê, wendoxî rê tena wendiş manebeno; wendişo rijî, bêtehm û zehmetin. Hende zehmetin ke eynî sey hemaltî. Çunke zafê edîbê ma bi no qayde wendoxan hemalê xo hesibnenê.

> "Eke bi nuştena nê kitabî game kî bo ziwanê ma rê xizmet bêro kerdêne, ez zaf keyfweş bena û na mi rê xelat û rûmetêda pîl a."

Hesen destpêkê kitabê xo de vano "Eke bi nuştena nê kitabî game kî bo ziwanê ma rê xizmet bêro kerdêne, ez zaf keyfweş bena û na mi rê xelat û rûmetêda pîl a." Helbet nîyetê Hesenî pak o labelê na saeta ra pey bi no hawa fayde nêreseno edebîyat û ziwanê ma. Çunke êdî dinyayêk lîteratûrê ma virazîyayo. Na saete ra pey ma rê kalîte lazim o. Çîyo kalîteyin ma "gamê" aver, sewbîna zaf faydeyê nuştişî çin o. Xora eke çîyêk de fayde çin bo "xelat" û rûmet"ê xo zî hende zêde çin o.



## Cizîra Botan

# Peytexta dîrokê 2

Welat Baz

Gava yekem jî li gor Bedirxan yekitiya Kurdan bû. Qasidên xwe ji hemû serekeşîran re şand. Piştî peymana pîroz beg û mîrên Kurdistanê kel û sengerên xwe zexm kirin û hijmara leşkerên xwe zêdekirin. Rêvebiriya Kurdistanê piştî vê hevkariyê di nav van beg û mîrên Kurdan de carek din hatibû tanzîm kirin.

Bedirxan di demên pêşîn de heta asasê desthilatiya xwe zexm bike rasterast bi Osmaniyan re neketiye pozberiyê.

Berbi salên 1840'an li Kurdistanê Mîrnîşîna Soran ji holê hatibû rakirin û Baban jî qels bûbûn. Dewleta Osmanî bala xwe dabû ser Mîrnîşîna Botan.

Bedirxan piştî karên yekitiyê gîringî da sazkirina artêşê. Li Cizîrê dû atolyeyên cepilxane û çekan jî damezirand.

Mîr Bedirxan piştî hukumdariya xwe di warê aborî û civakî de jî gelek reforman kir. Piştî ku Bedirxan sînorên mîrekiya xwe ewle kir wek siltanek serbixwe tevgeriya. Mêvanên ku bi fermana siltanê Osmanî dihat qesra wî qebûl nedikir.

Mîrnîşîna Botan ber bi dewleteke serbixe de diçû. Sînorê dewleta Bedirxan li bakûr digîşt Wan û Urmiyê, li başûr digîşt Mûsil û Şengalê li rojhilat digîşt Rewandûzê, li rojava digîşt Amed û Siwêregê.

Mîr Bedirxan piştî mîrekiya Botan hêdî hêdî dest bi avakirina dewletekî kir. Botan û heremên derdorê, êdî xerac û bac nedan siltanên Osmanî.

Bedirxan ji bo rêvebiriya dewleta xwe hukûmetek jî avakir. Di hikûmeta Mîr de Mele Evdilqudûs bû Şêxulîslam. Tahir Axa fermandarê leşker û şer, Hemdî Axa serdarê leşkeren taybetî, Efendî Axa jî wezîrê karê aborî û xezîneyên hukûmeta Botanê bû. Berbi salên 1842'an de êdî Bedirxan dewleta xwe resmen îlan kiribû û tixûbên wê devletê jî keşf bûn. Bedirxan di Kurdistanê de li pey damezrandina dewleteke mezin bû.

Helwest û tevgerên Mîr Bedirxan Osmaniyan ditirsand. Ew di nav fikara de bûn. Wî dişopandin. Serhildana Mîrê Baban Kor Husên Paşê nûh hatibû tefandin.

Osmaniyan artêşeke mezin di bin serdariya Osman Paşa de şandin ser Dewleta Botan. Atêşa Osmanî êrişa yekem li bakûr ji alî Muksê ve bir ser Evdal Xan. Piştî şikestina leşkerê Evdal Xan ew hat girtin û tevî malbata wî berê wî dan sirgûna girava Rodosê. Piştî têkçûna mutefîkê Mîr Bedirxan, Mistefa Beg jî, artêşa Osmanî bi sê milan ve bi ser Botan ve vedikşe. Li dijî Bedirxan artêşên Osmanî ê Xarpût, Mûsil, Diyarbekir, Erzirom, Bexda û Ruhayê ketine tevgerê. Hijmara wan ji 45 hezarî zêdetirin. Her wiha 40 topên mezin jî di destê atêşa Osmanî de heye.

Şêrê yekem di nav artêşa Osmanî û artêşa Botan de li nêzî bajarê Ûrmiyê li keraxê Çemê Zeytûnê qewimî. Bedirxan di şer de serdariya artêşa xwe dikir. Di pevçûnên pêşîn de hêzên kurd atêşa Osmanî ji hev belav kirin. Hin topan jî bidestxistin lê nikaribûn wan bikarbînin. Li aliyekî din jî nexweşiya qolera di nav hêzên serhilder de destpêkiribû, gelekê wan nexweş ketibû.

Mîr Yezdan Şêr pismamê Bedirxan bû. U di şer de yek ji fermandarên artêşa Botan bû. Wî milê rastê ê artêşê birêve dibir. Lê di binî de bi Osmaniyan re têkilî danîbû. Osmaniyan soz dabûnê ku ew ji Bedirxan biqete wê mîrekiya Botan bidin wî. Piştî ku şer carek din destpêkir Yezdan Şêr tevî mirovên xwe xwe sipart Osmaniyan û li dijî Bedirxan şer kir. Piştî safguhertina Yezdanşer Osmanî ketibûn nav dilê artêşa Bedirxan. Piştî şerên ku bi hefteyan ajot, Mir Bedirxan tevî 5-6 hezar leşkerên xwe çû kela Dihê. Di dorpêçana xedar de berxwedena kelê nedihat şikestin. Lê ji tuderî hêviya alîkariyê nemabû û hêzên Osmanî gelek zêdebûn. Sihûda Bedirxan alikariya wî nedikir.

Di encam de di roja 20'ê Tîrmeha sala 1847'an de Mîr bi şertê ku wê tu zerar negîje kesên kelê û maiyeta wî deriyê kelê vekir û teslîm bû.

Piştî ku Osmaniyan Mîr Bedirxan tevî sê kurên wî, brayê wî yê mezin Mîr Salih û birayê wî yê biçûk Mîr Esed dîl girtin ew şandin İstenbolê.

Ji bo muhafazayê Reşît Paşa û Evdilqadir Beg tevî Mîr Bedirxan çûn Îstenbolê û 19 Îlonê de gihîştin wêderê. Li İstenbolê Mîr Bedirxan derdixin hizûra Siltan Evdilmecîd. Piştî hevdîtinan wan ew sirgûnê girawa Girîtê a nav Derya Spi dikin.

Zarok û malbata Bedirxan jî li Kurdistanê mabûn. Hemû mal û warîdatên Mîrekiya Botan hatin talankirin. Yezdan Şêr demek muweqet wek waliyê Cizîrê hat tayînkirin. Li ser helwesta Yezdan Şêr herçiqas îdeayên cuda hebin jî, lêkolînvan û şahidên demê bawerdikin ku wî çav berda bû cîhê Mîr Bedirxan.

**Cizîr, cîh û warê zaroktî, mezinahî û serpêhatiyên Mîr Bedîrxan e ku li hemberî Osmaniyan ketiye nava têkoşîneke dijwar.**

Piştî mirina Mîr Evdilla ku ew bavê Bedirxan bû, Seyfedîn Beg derbasî ser textê Botan dibe. Ew braziyê Evdilla Beg û bavê Yezdan Şêr bû. Lê ji ber ku karê mîrnîşînê baş birê nedbir, bi israra eşîrên Botan brayê mezin ê Bedirxan Salih Beg ketibû cîhê wî. Ji ber ku Salih Beg jî zêdetir bi karê îbadet û terîqetê ve mijûl bû, Bedixan derbasî cîhê wî bû.



# Birca Belek



Li Kurdistanê li her bajarekî kevnare, keleyekî heye. Kela Cizîrê jî li welatê rojê, yek ji kelêyên herî kevn e. Li gor çavkaniyên nivîskî sûr û kela Cizîrê b.z di salên 4 hezaran de di dema Gûtiyan de hatiye avakirin. Dîwarên sûrê di şeklê keştiyekî de ye. Tê gotin ku ev şeklê keştiya Nûh e û berê wê li çiyayê Cûdî ye. Kele li bakûrê bajêr li keviyên Çemê Dîjlê ye. Kele li ser sê qatan hatiye avakirin û ji 360 odeyan pêk hatiye. Di demên Babîlî, Asûrî, Medî û Abbasiyan de hatiye tamîrkirin û cîhên ku xerabûne ji nûh ve hatine çêkirin.

Kela Cizîrê ji kevirên reş hatiye lêkirin. Di kelê de saray, mizgeft, medrese, zîndan, diwan û beşên leşkeran hebûye. Di dema Mîr Tajdîn de bin qesra xwe ji bo dev û hespên mêvanan axurek hatiye avakirin. Di dema Mîr Seyfedîn de bi navê Seyfiye medreseyekî hatiye avakirin, ku hîn jî li ser kelê mîhraba vê medresê disekine.

Helbet kela Cizîrê bi Birca Belek navdar e.

Qişla Hamîdiye jî ku ji alî Fermandarê Alayên Hemîdî Mistefa Paşa ve sed sal berê hatiye çêkirin di nav kelê de cîh digre.

Zinnarên rojhilatê kelê ku di nav ava Dîjlê de ne, cîhê civîn û geştên havinê ê mîrên Cizîrê bûne.

### Piştî Dewleta Botan

Piştî ku Bedirxan tê sirgûnkirin Siltan Evdilhemîdê Osmanî Serokê Eşîra Mîran Mistefa Beg li heremê ji bo damezrandina Alayên Hemîdiye dihilbijêre. Eşîrên Cizîrê ê parastvanên Saltanata Siltan Hemîd heta dawiya Şerê Cîhanê ê Yekem jî, ji Bulxarîstan ta Hewlêr di gelek eniyan de şer kirine. Ev eşîrên hevkarên Osmaniyan di serê sedsala 20'an de li Şirnaxê Serhildana Axê Sor jî ditefînin.

Piştî damezrandina Komara Kemalîst ku serhildanên Kurdistanê jî tên tefandin, heta salê 1960'an Cizîr dikeve nav bêdengiyê. Di van salan de li Başûrê Kurdistanê bayê netewî bilind dibe, li Cizîrê jî bandora xwe dike. Tevgera Başûr bi taybetî li Cizîrê ji xwe re gelek têkilî û baregeh dibîne. Gelek eşîr û rewşenbîrên Cizîrê alîkariya şerê Başûr dikin.

### Salên Dawîn

Ber bi salên 1980'an ve jî li Cizîr û derûdorê êdî xebatên rêxistinên welatparêz bi awayekî eşkere dimeşiya. Gelek tevger û partiyên kurd li Cizîrê rêxistinkirîbûn. Ji ber ku bajêr ji bo herdû perçên Kurdistanê wek deriyekî bû, nawendeke stratejîk bû. Di sala 1984'an de ku şer dest pê kir, bargehên pêşîn çend km dûrî Cizîrê, li çiyayên Cûdî û Gabarê hatibûn danîn. Keça kurd Berîvan Egal di sala 1988'an de li kolanên Cizîrê di şerekî de tevî hevalê xwe Emîn hat kuştin. Qebristana Berîwan hîn jî ji alî gel ve wek mekanekî pîroz tê ziyaret kirin.

Cizîr piştî belavbûna şer bûbû remza serhildanê. Li Bakûr serhildana yekem di Newroza sala 1990'an de li Bajarê Cizîrê lidarket.

**Cizîr ne tenê di dema Osmaniyan û Bedîrxan de, di salên 90'î de jî bû keleha berxwedanê, Li Bakûr cara yekem Newroz li vir hate pîrozkirin.**

### Mizgefta mezin

Berhemekî dîrokî ku vî bajarê kevnare dinexşîne Mizgefta Mezin e. Ev mizgeft di demên berî Îslamê de dêr bûye. Avahî di sala 639an de wek mizgeft hatiye bikaranîn. Di dema Abbasiyan de jî hatiye tamîrkirin. Di sala 1160'an de ji alî Mîr Elî yê kurê Mîrê Cîzirê Baz Şah ve ji serî heta binî hatiye restorekirin. Minareyekî çargoşe di sala 1156'an de li mizgeftê hatiye zêdekirîn. Sitûnên ku kûbeyên mizgeftê li ser bilind bûne, ji kevirên qul hatine lêkirin.

Deriyê hesin ê mezin di sala 1983'an de ji cîh hat derxistin. Rêvebirên dewletê ev deriyê ku bi motîvên ziv, şeklên sifir û nivîsên kûfî hatiye neqişandin birine Îstenbolê. Deriyê Mizgefta Cizîrê niha di Muzexana Topkapiyê de ye.

### Dibistana Ebul İz

Fizîkzanê Mezin Ebul İz El Cezarî di sala 1153'an de li bajarê Cizîrê hatiyê dinê û li wir jiyaye. Kaşifê dengdayî El Cezarî di dema xwe de qasî ku tê zanîn, 60 makîneyên cuda çêkirî ye. Di nav îcadên wî de cûrekî robotan û katjimêr jî hebûne. Ji ber zanebûn û hunerê xwe wek ‚delaliya demê' yanê wek ‚bedîuzeman' hatiye binavkirin. Nav û dengê zanebûn û îcadên wî ji alema Îslamê heta alema Rojava belav bûye.



### Tirba Ebul İz

Bedîuzaman Ebul İz ku di sala 1233'an de çû ser heqiya xwe, di hewşa Mizgefta Nûh de, li kêleka Hezretî Nûh hatiye veşartin. Li ser qebra wî qubeyekî hatiye lefandin û qebra wî ji wê rojê wir ve wek tirbeyekî pîroz tê naskirin.

### Mizgefta Nûh

Ev mizgeft bi navê qahramanê tofana mezin Hezretî Nûh tê naskirin. Nûh piştî ku dimre, li hewşa vê avahiyê tê veşartin. Avahî li Taxa Torê, li seriya girekî ku Dîjle ji ber de derbas dibe, hatiye avakirin. Avahî di demên berê de jî wek hawra û dêr hatiye bikaranîn.

Qebra Nûh di qata binî a mizgeftê de cîh digre. Mîhraba ku ji serê ewîl de tê bikaranîn hîn jî li ser piya ye. Qatên jorê ê mizgeftê ji ber ku xerabûye û ji alî gel ve hatiye tamîrkirin, orîjînalîta xwe wenda kiriye.

**Bajar, di heman demê de gorên gelek kesên ku hem bo kurdan û hem bo cîhanê navdar in di nava xwe de dihewîne. Hz. Nûh, Melayê Cizirî û hwd.**

### Tirba Hezretî Nûh

Qebra Nûh jî di bodroma vê mizgeftê de ye. Li gor mîtolojiya pîroz Hezretî Nûh piştî ku mir, li Cizîrê li Taxa Torê hat veşartin. Qebra Nûh, di demên peydabûna olên semawî de, pêşiyê wek hawra cihûyan, paşê jî wek dêra Îsewiyan hatiye bikaranîn. Di sala 639'an de jî evder wek mizgeft hatiye guhertin. Ev avahî li ser rûyê cîhanê yek ji tirbeya herî kevn e.

### Tirba Melayê Cizirî

Navdar û rûmetekî Cizîrê Mele Ahmed e, ku bi navê Melayê Cizîrî tê naskirin. Mela di nav salên 1570 û 1640'an de jiyaye. Ji bilî alimiya xwe, wek şaîr û fîlozofekî mezin jî tê naskirin. Dîwana Melayê Cizîrî di nav qlasîkên Wêje ya kurdî de cîhekî taybetî digre. Di beyt û xazelên Mele Ahmed de, tasawûf, felsefe, ewîn û zanyarî bihevre cîh digrin.

Tirba Mele Ahmed di hewşa Medresa Sor de ye. Medrese li nav bajêrê Cizîrê ji tûleyên sor hatiye lêkirin. Kevirên qebran ji bazaltên reşin. Di tirbê de 7 kes radizên. Qebra alî başûr a Mele ye. Ji bilî Melayê Cizîrî, şair û mutasawif Feqiyê Teyran, zimanzan û alim İbnul-Esir Mecdûdîn, zanist û edîb İbnul-Esir Ziyaedin, Fakih Ebu Tahir, dîrokzan İbnul-Esir İzedîn tevî gelek zanist û rewşenbîrên din jî ji Cizîrê ne.

### Medresa Evdaliye

Ev medrese di sala 1437an de ji alî begê Cizîrê Mîr Evdal ve hatiye çêkirin. Mîr Evdal torinê hukumdarê Kurd, Seyfedînê Botî ye. Medrese di nav Taxa Torê û qebristana bajêr de, li seriya sûra Cizîrê cîh digre.

### Tirba Mem û Zîn

Yek ji rûmet û serbilindiya Cizîrê ew e ku ji evîna Mem û Zînê re bûye mekan. Bûyer û evîna Mem û Zînê di salên 1450 û 1451'an de li Cizîrê li derûdora qesra mîrê bajêr Zeynedîn de derbas dibe. Di encama bûyerên xirab de ku Mem û Zîn bê ku bigîjin hevûdû dimrin, di hewşa Medresa Mîr Evdal de tên veşartin. Tirba herdû evîndaran li başûrê medresê di qata binî de ye. Di tirba Mem û Zîn de qebra sêyem jî a Beko Evan e ku ew sebebê herdû bengîna ye.

## Salên têkoşîn û xebatê

Ez li Agiriyê di sala 1944'an de hatime dinyayê. Dibistana seretayî li wir min xwend û pişt re ez çûm Enqere. Di sala 1966'an de me bi navê Yeni Akış govarek derxist. Li ser kurdan û wêjeyê me nivîs çapdikirin. 1969'an de Komeleya Şoreşger ya Rojhilat ya Çandî (DDKD) hate damezrandin. Ez ne endamê damezrandinêbûm lê ez ezayê wan bûm. Min karê perwerdahiyê pêk anî.

Di sala 1971'an de jî muhtıraya leşkeri qewimî û em jî hatin girtin. Em dihatin sûcdarkirin ku me komele avakiriye da ku em Tirkiye parçe bikin. Me li wir cara ewil parastineke siyasî kir. Bo berxwedanê me hem bi nivîskî hem bi devkî ev parastin kir û me qala heq û mafên kurdan dikir. Piştre doz bi dawî bû û biryar derket. 11 sal û 4 meh ceza li me hate birîn. Bi ser de jî lazimbû piştî cezayê 4 salan em li wir bihatana sekinandin. Navên wek İsmail Beşikçi, Musa Anter, Tarık Ziya Ekinci, Canip Yıldırım, Mümtaz Kotan, İbrahim Güçlü, Ümit Fırat jî hebûn wê demê û em tev girtîbûn.

### İhsan Aksoy:

# Sedsala 21. ya kurdan e

İsmail Yıldız

Siyasetmedar û nivîskar İhsan Aksoy diyarkir ku bo kurdan êdî derfetên mezin derketine û di sedsala 21. de wê kurd di her qadê de bala cîhanê bikşînin, lê divê di nava hêz û partiyên Kurdistanî de lihevhatinek pêk bê û hemû kurd ji destkeftiyên Kurdistana Başûr xwedî derkevin.

Aksoy, di derbarê jiyana xwe ya ku li sirguniyê derbas bûye, salên xwe yên 80 û 90'î, siyasetên kurdan û rewşa rojhilata navin ya dawî de bi BasNûçeê re axivî. Aksoy got: Sedsala 21. ya kurdan e.



***Bawerim cara yekem cenabê te li dadgehêkê parastina siyasî kir.***

Li dadgehê me dixwast ku em bi avayekî sosyalistî parastina siyasî bikin. Lê di nava me de hin cûdakarî derketin û min û hin hevalên xwe, me li ser heqên kurdan û bi rêbazeke sosyalist parastina siyasî kir. Dozger wê demê digot 'kurdî tuneye' û tenê 30 pêyv berhev kiribûn û digotin hema ew e. Mümtaz Kotan wan jî digot, "Eger hun di vê rê de herin wê demê tirkî jî tune ye." Di dadgehê de gelek tiştên pêkenok jî derketin. Mesele Musa Anter got, "Hun dibên kurdî tune ye, tenê 30 pêyv e. Mirîşk bile pi 30 pêyvî dizanin." İsmail Beşikçi jî alikariya nivîsandin û fikrî dikir bo parastinê. Piştî ku dadgeh bi dawî bû û ceza li me hate birîn, Wezîrî Tenduristiyê yê wê demê Selahattin Cizrelioğlu ku ji Amedê bû bi erebeya xwe hat wê derê. Hevalên wî hebûn di nava me de. Musa Anter, Canip Yıldırım hevalên wî bûn. Xwest ku cihekî rehettir bidin me. Dema ku doz testîq bû em birin girtîgeha nava kelehê. Em 3 salan di hundir de man û afû ya gelemperî derket û em berdan.

***Piştî derketinê we çi kir?***

Piştî derketinê gelek kes revîn. Derketin derveyî welêt. Yek ji wan jî Kemal Burkay bû. Beriya wê, piştî ku em di 74'an de azad bûn. Di 75'an de Kemal Burkay wan hatin û gotin lazim e em partiyekê avakin. Li ser nêzikahiya sosyalîstî me bi 7 hevalan re PSK (Partiya Sosyalîstên Kurdistan a Tirkiye) avakir. Di heman demê de jî bi navê Özgürlük Yolu me govarek derdixist. Di wir de nivîsên min jî dihatin çapkirin. Piştre hin partiyên din jî hatin damezrandin. Derdora Rizgarî hebû. 78'an de jî PKK derket. Berê wan ji xwe re digotin UKO'cî. (Artêşa Netewî ya Rizgariyê) Me jî bi navê DHKD komeleyek ciwana avakir. Di heman demê de ji ber ku ji me re kar jî lazimbû dibûye ez bixebitim. Şerafettin Elçî wê demê wezîr bû û wî ji min re li Edeneê karek peydakir û min li wir dest bi memûrtiya tûrîzmê kir. Ez demekê li wir xebitîm û piştre çûm Agiriyê. Li wir jî me bi navê Demokrasi rojnameyek derxist. Di vê navberê de li ser meseleyên şexsî di nava min û partiyê de hinek sarî çêbû û ez ji partiyê veqetiyam. Di heman demê de pirtûkeke min derket bi navê 'Ulusal Sorun ve Türkiye'de Ulusal Sorun.' Ez li aliyekî jî bajar bi bajar digeriyam û min semîner didan. Di sala 1980'î de me famkir ku dengê lingên faşîzmê tê. Wê demê Mehdî Zana jî şaredarê Amedê bû. Wî gazî min kir û got derkeve ji welat. Ji ber ku şaredar bû û hin hevalên wî hebûn, di derbarê dahatûyê de hin tişt ji wî re gotibûn. Got min bihîstiye ku talûkeya mezin tê û lazime ez jî derkevim. Piştre bi ser Îranê ve derbasî Elmanyayê bûm. Li wir jî komek heval KOMKAR avakiribûn û piştre hinek ji wan veqetiyabûn û me bi hev re Komeleyek bi navê Mala Gelê Kurd avakir û li wir me rojnameyeke mehane ya bi navê Gaziya Welat derxist. Piştre hin heval ji derdora PKK'ê hatin û gotin bo Serxwebûnê ji me re binivîse. Hema gotin tu dikarî nivîsên rexneyî ji bo me jî binivîsî. Min heta salekê jî bo Serxwebûnê nivîs nivîsîn. Ne kum in fikrên wan bi temamî dipejirandin lê li hember têkoşîna wan ez rêzdarbûm. Ji ber ku tirk ji demokrasiyê dûr in me dizanî ku ew neçarî çeka mane. Herwiha 17 sal bi wî awayî derbasû û di 2004'an de ez vegeriyam Tirkiyeyê. Dema ku li Elmanyayêbûm romaneke min jî hatibû çapkirin. Bi navê 'Kürdün Türküsü.'

***Ku em vegerin ser rewşa kurdan ya heyî... em niha li kîjan astê ne? Dema ku hun vegerin li dû xwe û li rewşa heyî binêrin kurd li kêderê ne?***

Meseleya kurdan êdî wek berê ku em ji nîqaşa 'mêtingeriyê' destpê bikin dûr e. Ew merhele li dû maye. Kurd êdî hatine merheleya ku mafên xwe bixwezin û bidestxin. Dema ku jinek diwelide, êş û sancûyên wê hene. Însanên di temenê min de bêhtir xwînsar difikirin. Ez dizanim ku wê çêbe. Helbestek Eskerê Buyîk dibê, "Wê Kurdistan çêbe..." ez dizanim ku ew daxwaz û ramanên Ehmedê Xanê û Melayê Cizîrî pêk tên. Ez her tim li dijî çektariyêbûm. Rast e riya demokrasiyê dirêj e. Ji ber ku siyasetmedar û berpirsên tirk hê nehatina asta demokrasiyê. Grûba PKK helbet kedeke mezin dan û bi çekan rewş anîn vê astê. Ew jî rastiyek me











ye. Lê her sazî, rêxistin, komele û hwd. xwedî emrekî ne. Wê werin û herin. Dibêjin her tişt duguhire û tiştê ku neguhire tenê guherîn e. Lê divê êdî beşên kurdan êdî li hev bên. Astengiyên me yên mezin hîn jî hene. Zimanê me tenê di karên rojane de pêk tên. Bo xwendin û nivîsandina kurdî pir wext lazim e. PKK jî êdî gihîştiye asteke din. Tevî şervaniyê têkoşîna demokrasiyê jî diken. Ew jî gihîştinê û din ava wan de bo her fikre qadro gihîştinê. Dibêjin dîrok, bo kesên ku dereng bimîne cezayên giran dibire. Em gelek dereng man û cezayekî giran dikêşin. Em hê nû destpêdikin.

### Ev der Kurdistan e!

***Pêvajoya çareseriyê li gor te çawa diçe?***

Her tişt di carekê de çareser nabin. Bo Tirkiyeyê astengiyên mezin hene. Artêşa wan hê pir bi bandor e. Lê bi ya min namzetiya YE'ê divê bê parastin û li ser wê kar bên kirin. Û helbet divê kurd ji mixalefetê nemîne. Bo heq û mafên xwe divê mixalefeta xwe bidomînin. Ya me du tiştên girîng hene; yek, pirsa Kurdistanê divê bê legalîzekirin. Divê em ji meseleyên wek 'Rojhilata Başûr' filan derkevin. Ew der Kurdistan e û divê ew her bê legalîzekirin. Ya duduyan jî perwerdahiya bi zimanê kurdî ye. Divê em zorê bidin van. Xêncî wan helbet bo mafên din jî her mixalefeta demokrasiyê bê meşandin.

***Bo Kurdistana Bakûr formûlek çawa divê?***

Niha tiştekî eşkere heye. Xwestina demokrasiyê navê wê li ser e. Divê di nava aştiyê de bê meşandin. Federalizm jî di rê ya xwestina demokrasiyê de dimeşe. Divê her tişt di rê ya demokrasî û aştiyê de bê xwestin. Her ku kapîtalîzm pêş ve diçe, mane ya sînoran namîne. Federalizm û daxwazên din ne mihîm in. Navê wê tu çi dêynî dêyne. Yên bi lez, heqê perwerdahiyê û legalîzebûna Kurdistanê ye. tiştên din meriv hema çi navî bixwaze dikare lê bike. Dîsa eyan e ku meseleya kurdî, meseleyeke navneteweyî ye. yek heqê însanî ye. Ya din kurd li çar welatan belav bûne. Kurdistana Başûr êdî bi serokatiyên wek Emerîka, Elmanya, Fransayê re rûdine. Dema ku Mele Mistefa derket ser çiyan li asteke din bû lê niha gihîştiye cihekî din. Millet bi hezar salan dibin dewlet. Rêyeke zor û dirêj e lê êdî kurd gihîştine cihekî pir baştir.

**Gelek grûbên Bakûr bo berjewendiyên xwe bi Başûr re dikevin têkiliyê.**

***Di vê astê de têkildariya hêz û hizbên kurdan divê bi çi rengî be? Di navbera hêzên her çar parçeyan de divê siyaset û siyaneteke çawa bê avakirin û meşandin?***

Bi qeneata min, du cûre hene. Başûr êdî bûye qezenceke mezin. PKK li wir jî mixalefetê dike. Nahêle gelek tişt bi avayekî baştir bimeşe. PKK pir mezin bûye, di nava gel de jî xwedî cihekî mezin e. Lê xuyaye di nava wan de yektayiyek nîn e. Divê ew midaxîlî siyaseta parçeyên din nebe. Yanê divê bo başûr nebe asteng û daxîlî siyaseta wir ya navxweyî nebe. Helbet dikarin li wir xwe bi rêxistin bikin û saziyên xwe vekin lê divê bo siyaseta wir ya gelemperî nebe asteng. Ew ji Başûr şîrikatiyê dixwazin lê wiha nabe. Bo vê demeke pir dirêj lazim e. Helbet li Başûr jî di nava xwe de yektayiyek nîn e. Demokrasî li wir jî xwedî hin pirsgirêk û kêmasiyan in lê êdî tiştek bi destxistine. 15 sal e ku ji çiyayan daketine lê demokrasiyeke baş damezrandine. Norwêciyan bi hezaran salan karîn vî bikin. Çiqas ku demokrasiyek çargoşeyî nebe jî di demeke pir kin de rêyeke pir dirêj li dû xwe hiştine. Ewropa niha bo wan spasdar e. Bi Tirkiyeyê re têkiliyên pir mantiqî danîn. Di siyaseta navbera dewletan de dijminahî nabê û siyaset li ser dijminahiyê nameşe. Divê meriv mecalan nede wan. Grûbên parçeyên din divê tenê alîkariya wan bikin. Divê ji bo menfaatên partiyan bidestxistiyên Başûr nayên astengkirin. Li vir hin grûbên bêyî PKK'ê jî tiştên ne baş dikin helbet. Li ser navan li hev nakin. Ew dibê ez PDK' me yê din dibê ez im. Ew jî bo berjiwendiyên xwe nêzikî Başûr dibin. Îro şert û mercên baş derketine ber kurdan. Grûbên Kurdistana Bakûr divê daxîlî Başûr nebe ji ber ku ew ne tiştekî realîst e. Madem ku tu niha qala Kurdistana mezin nakî, çi karê te bi Kurdistana Başûr heye? Dixwazin wek Lûbnan û Bêyrûdê bikin. Wiha nabe.

***Li Başûr serxwebûn di rojevê de ye. Serxwebûna Başûr wê bandoreke çawa li parçeyên din bike? Kurd dê di warê psîkolojîk de sûdeke çawa jê bigrin?***

Dema ku dewlet were damezrandin wê moraleke mezin bide kurdên li ser cîhanê. Ya duduyan, di koma milletan de wê temsîlkariya kurdan çêbibe. Wê demê dinya neçar dimîne ku bi şiklekî din nêzikî meseleya kurd û Kurdistanê bibe. Li qada navneteweyî wê derfet û deriyên mezin derkevin bo kurdan. Ya sisêyan, kurd êdî tên ser xwe û dibin millet. Bazareke wan çêdibe. Bazara bazirganiyê, ya ziman, ya çandî...bi her awayî bo wan li cîhanê, li Rojhilata Navîn bazarek mezin derdikeve. Kurdistan welatekî dewlemend e. Hem di bin erdê de dewlemendiyên mezin hene. Di demeke kin de kurd dikarin xwe bigihînin menzîleke mezin. Dibe ku di demeke pir kin de Ewropa bibêje bibin endamê me jî. Wê artêşa te çêbe. Dewlemendiyên te hemû di destê te de dimînin û bo pêşketina bi her awayî ew pir girîng e. Wekî din jî helbet li parçeyên din wê di warê bazirgianiyê de, di warê dîplomasiyê de, di warê çandî û polîtîk de şax bêne vekirin û kurdên parçeyên din wê bi yên Başûr ve têkildarbin. Di warê ticaretê de jî wê derfetên mezin derkevin. Helbet kurd wê bi kurdan re bidin û bistînin. Û di warê pisîkolojîk de jî wê kurd bigîhîjin asteke pir bilind. Êdî serê ku her hatiye tewandin wê bilind bibe.

**Bi serxwebûnê re li her qadê wê derfetên mezin li ber kurdan vebin.**

***Kurd çar parçe ne û di bin desthilatiya çar dewletan de ne. Ji ber vê, xuya ye her kurdek herî kêm bi du zimanan dizane û pirziman in. Ango kurd bêyî şaristaniya xwe şaristaniya 4 gelên din jî dizanin. Di pêjerojê de dema kurd bibin yek gelo ev yek wê weke avantajekê were hesibandin?***

Helbet ew awantajeke mezin e. Çawa nebe. Îro li ti welatên din dibe ku bi tevahî milletek ewqas xedî zanyariyeke 4 şaristaniyan û zimanên din be. Weke te jî got, kurd niha bêyî zimanê xwe, tirkî, erebî û farisî jî zanin. Mesele ev e ku bigihîjin hev û vê bo perjewendiyên netewî bikarbînin. Di pêşerojê de rêyeke pir dewlemend û pir bi xeml li ber kurda ye. Li Rojhilata Navîn çar şaristaniyên mezin hene. Tirk, ereb û faris û kurd jî bi van re dijî û ji her alî vê elimine hebûna van milletan. Ew tevî ku pişavtin û tiştekî xirab e, di dahatûyê de awantajeke mezin e. Di warê çand, huner, wêje û nivîsandinê de wê kurd werin cihekî pir û pir balkêş.

***Di encama vê rewşê û rewşa kurdan ya îro de gelo mirov dikare bibêje 'sedsala 21'an ya kurda ne?'***

Belê eynî wiha ye. sedsala 21. teqez ya kurda ne. Wê kurd di her alî de xwe bigihîjinin asta ku gerdûn lê ye. Niha li her aliyê cîhanê zaneyên kurd hene. Di zanîngeh û akademiyên rojava de, li qada dîplomasî û siyasetê, li qata zanistê û wêjeyê, hunerê, li her dewerê kurdan xwe gihandiye asteke pir baş. Helbet ku ew jî tê wateya ku sedsala 21. ya kurda ye.

## Seyîtxanê Boyaxcî

# Dengbêjê keserên bê serûber

**Rawîn Stêrk**



Di hundirê 'dem'a heyî de, weke marekî bi zengul dengê kilamekê hilm dide kevirên sûrên Amedê. Piste pista serî rakirinekê, qîre qîra îtirazekê ye ew dengê zîz î ku bi awayekî absûrd rûyê xwe dispêre meydana Daxkapî. Li jor qaşo qûl û li jêr jî qaşo welatîbûn. Ew deng carina dibe lorandina Feqî û xezaleke xav ditirsîne di hembêza Evdalê Zeynikê de û carina dibe govendeke şênber li dora sindoqa boyaxê ya Seyîtxanê Boyaxcî...

Seyîtxanê Boyaxcî yek ji dengbêjên herî girîng ê ku di dema gihîştina me de dijî ye. Demeke dirêje ku li Amedê li Mala Dengbêjan destê xwe dide ber guhê xwe û bi keserên tijî term û jan dilorîne û keviran ji guh dike. Kalemêrê dengbêj, xalê Seyîtxan xwedî jiyaneke wisa ye ku meriv dikare li ser jiyana wî nema fîlman bikêşe, romanan binivîse û bi têra xwe keseran bikşîne.

Xalê Seyîtxan di destpêka jiyana xwe de dest bi hemaltiyê dike û salên dirêj li kuçeyên Amedê di barên giran de stûyê xwe ditewîne. Wê demê xunaveke zirav diherikê dora stûyê wî, di wir re xwe berdide hundirê wî û weke teşiyeke dirîse bende kilaman. Pişt re jî dev ji hemaltiyê berdide û Şaredariya Bajêr weke karmend dest bi karekî dike. Karê paqijiya bajêr...

Seyîtxanê Boyaxcî hew bi strana 'Saliho Nûrê' bêhtir tê naskirin. Dema ku mirov li ser youtube 'Salih û Nûrê binivîse hew xalê Seyîtxan derdikeve, û li kuçeyên Amedê yên teng de qirika wî birînên Salih û Nûrê dikewîne. Kesek nizane ku ji ber çi ew bêhtir wê stranê dihone û dema ku dest bi wê stranê dike çima şilorî bi ber çavên wî dikeve. Destê wî bi destpêkirina stranê li guhê xwe kîp dike û çavên xwe dide hev. Wê demê meriv tê digîhîje ku Xalê Seyîtxan ne li vir e û ew li dû jana ewîndariyekê gopelê xwe li erdê dixe. Ew stran diyar e ku strana ku Xalê Seyîtxan bêhtir kezebreşî dike ye. Kî zane, belkî jî Xalê Seyîtxan li dû evîndariyeke bê miraz xwe di hepsa Mûşa şewitî de dihêse, an jî lezê dide temenê xwe yê mezin da ku kuz ûgihîje Nûra xwe...

Belê me gotibû Seyîtxanê Boyaxcî li şaredariyê dest bi karekî kiriye. Lê helbet ne karekî ku Xalê Seyîtxan êş û elemen xwe siviktir bike, lê karekî ku kuçe û derdora Amedê her roj paqij bike û sergoyên Amedê raserî ser hev bike. Tam 25 sal, gotin hêsan e lê Xalê Seyîtxan 25 salan li Amedê karkeriya paqijiyê dike. Û ew xunava ku di dema hemaltiyê de xwe berdide nava laşê wî div an salan de weke tîrmarekî reş di bedena wî de çele dike û laşê wî werdigire nava giloweriya xwe.

**Xwedê 7 zarok dan min û 7 caran ji min stendin. Min 7 carên din li ber wî da û êdî kezeba wî jî têrî nekir ku ji min bistîne.**



Mijar kesekî wisa ye ku dema qala şaristaniya tek diranî dibe, keser ji pirça serê wî hetanî paniya lingên wî qîr didin û destên qirmiçî li ser hev dimînin. Ew kes, hozaneke û awaza êxsîlî û xizaniyeke bê binî ye. ji ber ku di zarokatiya xwe de mirin li malbata wi hêrs dibe û gelek endamên malbata xwe di temenê xwe yê biçûk de dihewîne çavên wî ji awiran bêhtir, gellek wateyên din diçûrisînin. Û helbet ew xizanî û bêkesî pêsîra wî heya dawiya jiyana wî jî bernade. Seyîtxanê Boyaxcî, bi navê xwe yê ku dayîk û bavê wî lê kirî Seydo Şimşek, rêyeke ku kesek dê nexwaze ku tê de bimeşe ye.

Xalê Seyîtxan di sala 1933'an de li Gundê Lexerî yê bi ser Erxenî ya Amedê ve jidayîk dibe. Di du saliya xwe de dayîka xwe dide axê û di çar saliya xwe de jî bavê xwe dide nava lepên ezraîlê bêyom. Ji wê û pê ve jî weke karkerekî kedere, weke hemalekî kul û derdan diçilke nava jiyana xwe ya keserên hevrişmî.

Piştî ku dê û bavên xwe wenda dike neçar dibe ku bekeve ber destê ap û amojnan. Û ji bo sêwiyekî ew dest diyar e ku bê wateya wan çi ye. Xalê Seyîtxan qet rûyê tu dibistanan nedî ye. xwendin û nivîsandin çi ye nizane. Weke kesekî ku ji hemdemeke paşerojê hatibe di dema heyî de dijî, û bi stranên xwe jî mesele û kaşkaşa dema xwe dibêje. Boyaxcî di 15 saliya xwe de kulen xwe bi stranan dikewîne û di heman demê de jî dest bi exrtaî, şivanî û herwekîdin karên giran û bê qîmet dike. Li hemberî hemaltiya ku jiyanê xistiye stûyê wî, barkêşî û paqijkirina kuçeyan bo wî wateya azadiyeke ecib e...

Çendîn salan li kuçeyan boyaxkariya pêlavan dike û dema ku yek pozê pêlva xwe dirêjî wî dike, ew bi destekî boyaxê dike û destê xwe yê din jî dide ber guhê xwe. Hay Saliho, Têlliyê û hewd. Pişt re jî di dema ku Mehdî Zana dibe şaredar karekî dide wî. Êdî her çend ku ne bi qerawet û qatê cilan be jî, Xalê Seyîtxan êdî karkerekî bi meaş e. Piştî ku bi paçikê xwe yê qedîfe bi salan pêlavên beg, axa, fodil û qurreyan boyax dike, vê carê jî dest bi paqijiya sergoyên wan dike.

Heta sala 1980'î tam 25 salan li ser mazgala paşiya erebeyên sergo komkirinê xwe bi qulpekî dispêre û bi destên xwe yên bi qewer sergo dide hev. Piştî mesaî bi dawî dibe jî mesaiya wî ya stranbêjiyê destpê dike. Dengbêjî kal, demeke dirêj e ku ji aliyê Kurdistaniyan ve êdî tê naskirin û bî bo şev û şahiyan vedixwin, li gelek bajaran konsertê wî çêdibin û dengê wî li cd û albûn jî hatiye barkirin. Lê Xalê Seyîtxan hinekî ji rewş û halê kurdan ê dawî xemgîn û dilşkestî ye. Em ji devî wî bibihîzin: Berê ciwan bi hurmetbûn. Li yên niha baştirbûn. Yên niha hinekî sivik in. Helbet ez bo hemûyan vê nabêjim. Yên serê çiyan cûda ne. Ew roniya çavên min in. Ez qala wan nakim.

Lê li cem yên din mazintî û zoraktî nemaye. Yên mezin bêdeng in û hema ciwan û zarok diaxivin. Berê Amed, Amed bû. Qedir û qîmet ne weke nihabû. Dema ku yekî tu didîtî, silav dida, qîmet dida. Dema ku hefteyekî te yek nedîta, bi heyranî û qurbanî xatir dihate pirsin. Em çi bikin, dewletê agir ji gundan reşand û herkes li bajaran kom bû. Li qehwexaneyan manzarayeke tirsnak derket holê. Min karkeriya sergo komkirinê kir, min hemaltî kir. Lê heke ku Mehdî Zana nebûya hema parsekî jî bi dest min nediket. Xweda ji wî razî be, ku li kêderê kor û seqetek hebû hilgirt kar. Ew bavê bêkes û xizanan bû. Lê tevî her tiştî dîsa jî Kurdistan niha jî gelek xweş û gêş e. Tenê maye azadî. Heke carekê bi azadiyê jî bigihîştina her tişt temam bû...

Seyîtxanê Boyaxcî ku niha 81 salî ye û çîroka wî ne tenê ew e. Piştî ku dizewice jî 7 zarokên wî çêdibin lê li dû hev dimirin. Keserên wî bi mirina zarokên xwe bêhtir kûr dibe. Piştî mirina 7 zarokan 7 zarokên wî yên din jî çêdibin. Xweda êdî dev jî wî û perîşankirina wî bedide. Niha li Amedê bi zarok û nêwiyên xwe re dijî û êdî ji bo nêwiyên xwe dilorîne. Herwekîdin jî li Mela Dengbêjan a Amedê bo ciwan, şoreşger, tûrîst û gelê Amedê stranên xwe û teşiya rîstina stranan li hev tîne.





**Weke şêweyekî serhildêriyê li ser dîwarên avahiyên fermî nivîs û neqşên graffîtîkaran balê dikêşin.**

## GRAFFÎTÎ

# Serhildana li ser dîwaran

**Mijdîn Memdûh**

Li kolan û kuçeyên bajarên mezin, li ser dîwarên avahî û pireyan, nivîsên ku bi boyaxên sprey û neqşên balkêş hatine nivîsîn bala mirov dikşînin. Ne tenê nivîs hin sêmge, sûret û îşaretên ku li gel nivîsan hatine xêzkirin jî hêjayê pesnê ne. Li gelek deveran jî li ser derebe û deriyê dikan û mexezeyan bi tîpên mezin, gilover û bi şikl û şêmal ew nivîs û neqş derdikevin pêşmerî mirov. Ew şeweya nivîs û neqşê ku wek grafîtî tê bi navkirin heya salên 70'ê li metropolên cîhanê, weke rêbazeke anarşîzmê û serhildêriyê dihate zanîn û dîtin. Piştî salê 70'î bi taybetî li Stenbolê, li Tirkiyeyê jî destpê bû ku ew şêwe derkeve pêşberî mirov.

Di etîmolojiya Yewnan de peyva graffîtî ji peyva graphein çêbûye ku ew jî tê wateya nivîsandinê, peyva sgraffîto heta roja îroyîn ligel gellek xeletxwendin û guherînan weke peyva graffîtî hatiye û hebûna xwe parastiye.

Dîroka hebûna graffîtîyê digihêje destpeka hebûna jiyan an mirovahiyê. Wexta ku mirov bi vî awayî lê dinihêre, li Fransa'yê di şkeftên Lascaûs de wêneyên mirovên pêşî ku bi kevir û hestiyan xêz kiribûn divê bête bîra mirov. Em tê digihêjin ku mirovên pêşî bi saya hestî û toza rengîn teknîkên weke stensîl û spreyê jî bi kar anîne. Li Pompei piştî lêkolînên arkeolojîk gellek graffîtî hatine dîtin.

Graffîtî xwedî şewaz, xwegirêdan, lîteratur û sektora bazirganiyekê ye. Ji serdemên qedîm heta roja îro mirov biçin kî derê ew der guheriye û berhemên hunerî afirandiye. Graffîtî jî ji vê berhemdarî û daxwaza gurhertina jiyanê ya mirovan derketiye holê û pêk hatiye. Di encama daxwaza guherîna jiyanê û berhemdariya hunerê ya mirovan graffîtî derketiye holê.



Di qadên legal û îllegalde de bi sprey û boyaxên rengorengo pêşî li dîwaran û hesinên trênan pişt re li her derê xêzkirina wêneyan bi wext re dibe binyada çandekê. Ev çand çandeke mûxalîf e. Dengê mûxakefeta kolanan ya bi xêzan ya bi rengan. Ev çand hela herî xurt û karîger ya Hîphop'ê ye. Li cîhanê ligel ku nû gellek alîgir û dijberên vê çandê hene.

Graffîtî bi giştî bi sprey û boyaxên rengorengo nivîsîna fikr û ramanên takekesî (şexsî) ye. Ev yek jî tê wateya ku grafîttî ne di salên 1970''e dest pê kiriye. Lê weke hemû çand, huner û tevgerên sosyolojîk, şoreşgerî û anarşîkî di salên 1970'yan de gellek deng veda, pêş ket û li cîhanê belav bû. Naverokeke feylesofîk û îdeolojîk wergirt.

Graffîtî herçend li Amerîkayê di salên 1960'î de derketibe holê jî li gorî hin kesan ji wextê ku mirovahî heye heta aniha hebûna xwe berdewam dike. Li gor hin kesên din jî garffîtî ji nivîsên li ser Dîwarê Berlînê hatiye nivîsîn derketiye holê.

Di wan salan de graffîtîgerê herî navdar postevanê Yewnan Panayiotakis bû.Panayiotakis ji cihê derbas dibû bi spreyê 'Takî 183' dinivîsand.

Piştî Takî gellek graffîtîgerên din derketin holê. Bi boyax û spreyên rengorengo bi graffîtîyên cûrbecûr afirandin. Bi vî awayî hêdî hedî graffîtî li her derê dinayê belav bû herwiha gellek aligir û dijberên wê peyda bûn. Weke her têgeh û tevgerên nû peşî yên li dijî graffîtîyê deketin mûktedîr bûn. Ji ber ku deng û awazên kolanan êdî gûrttir derdiket herwiha mirovên ji 'sinifên jêr' xwe baştir îfade dikirin û graffîtî bûbû alaveke karîger bo mirov û mûxalefeta kolanan. Di nava grafîtînûs û grafîtîxêzan de jî piştî ku ew huner pêşket û li her qada cîhanê belav bû, cûdakarî jî derketin holê. Niha li ser rûyê cîhanê weke alîgirên beşên grafîttiyê gelek kom û grûbên cûda derketine û her komek ji wan bi armanc, rêbaz, lîteratûr û îdeolojiyeke xwe ya taybet dîwar û avahiyên raya giştî dineqişîne.



Di demê de li ser legalîzm û legalîzmê jî nîqaş di nava grafîttîkaran de derketine û beşek ji wan qet berê xwe nade destûr standinê û hewil dide ku bi tevahî bi awayekî îllegal hunera xwe bidomîne. Ji ber ku ew nêzikahî bêhtir mixalîf e, serhildêr û berxwedêr e û li hemberî sîstema kapîtalîzmê ye. Ew nêzikahî zêdetir li ser avahiyên raya giştî, yên fermî, dikan û pireyên mezin, mexezeyên merqeyên mezin û gerdûnî nivîs û neqşên xwe dineqişînin. Di demên ku xwepêşandan û protestoyên girseyî li dewerekê rûdididn, ew jî bi sprey û boyaxên xwe li wir xuyadibin û dest bi xebata xwe dikin. Alîgirî û piştgiriya xwepêşandan û protestoyên civakî û siyasî dikin, bi spreyên xwe tene ne neqişandin, carina jî li ser wesayîtên polês û hêzên ewlehiyê boyax dikin. Gelek caran li ser van wesayitên zirhî tiştên erotîk û mîzahî xêzdikin. Ew beş zêdetir bi şevê dixebite û adranalîna rev û şopandinê weke armanc ji xwe re diyar dike. Şopandina polîs û hêzên ewlehiyê kêf û caşa wan a herî mezin e.

Herwiha li hemberî vê nêzikbûnê, beşa ku li ser legalîzmê tevdigere jî zêdetir li dîwarên biçûk û li avahiyên vala xebatên xwe dimeşîne. Ew zêdetir piştî destûrstandinê û carina jî bi vexwendin li cihên diyarkirî grafîttiyên xwe dineqişînin. Ew beş di çalakî û protestoyan de cîh nagire û tenê li ser estetîka hunerî ya grafîttiyê disekine.

Helbet di navbera herdû beşan de şêweyên xêzkirin û rengan jî digihure. Beşa protest û îllegalîst zêdetir rengên sor û reş, kesk, zer bi kartîne. Rengên tîr û bi watê di nivîs û neqşên xwe de bikartînin, di sûret û wêneyan de jî kesên ku weke sîmgeyên faşîzmê ne bi awayekî nîşanyîn xêz dikin. Beşa duyem jî rengên soft û bêhtir boyaxên ron bikartîne.

Herwiha grafîttî li kolan û kuçeyan weke xunaveke serhildêrî diherike.

## Selîm Paşayê Amêdî

# Di çavkaniyên emerîkî de mîrekî kurd

Mehmet Gültekin

Dema Selîm Paşayê Amêdî di gulana sala 1839'an de di navenda mîsyonerên emerîkî li bajarê Urmiyeyê de bi gulek di dest de seredaniya gerok û mîsyoneran dike, hemû kesên di odeyê de ew çend bi bedewiya bejn-bal û bi xemla cil û bergên li ser wî efsûn bûne ku biryar dane, wekî wêneyeke wî amade bikin, bi xwe re bibin Emerîka ya wê heyamê ku hemweltiyên wan derbarê mîrekî kurdan û timtêla wî de bibin xwedî agahiyan.

Derbarê Selîm Paşayê mîrê Amêdî de di çavkaniyên dîrokî de ti agahî tunenin, tenê du emerîkayiyan li ser wî gelek agahî nivîsandine ku herduyan jî ji sala 1835'an pê ve li Urmiyeyê bi salan bi wî re dostanî kirine. Yek ji wan mîsyoner û zimanzanê emerîkî Dr. Justin Perkins e (1805-1869) û yê din jî hevalbendê wî Albert L. Holladay e (1805-1856) ku wan bi hev re di sala 1835'an de li Urmiyeyê navendeke ji bo xebatên bi Nestûrî û Suryaniyan re avakiribûn. Perkins di meha Gulanaa 1839'an de dinivîse ku Selîm Paşa mîrê Amêdî ye û ji ber ku di navbera wî û dewleta Osmaniyan de şer qewimiye û waliyê Bexdayê herêma wî dagir kiriye, ew jî ji neçarî hatiye Uramiyeyê. Mîrê kurd li rêyekê geriyaye ku warê xwe ji destê Osmaniyan rizgar bike. Hêviya Selîm Paşa ew bûye ku ji Şahê Îranê alîkarî bigire an jî Îbrahîm Paşa yê ku ji Misir û Suriyê dijî Osmaniyan şer dikir biserkeve ku belkî ew wê demê bikaribe vegere herêma xwe.

Tenê di cihekî pirtûka Thomas Laurie ya di derbarê xebatên mîsyoner Dr. A Grant yên li Kurdistanê de bi kurtasî hatiye neqil kirin ku Selîm Paşa birayê Îsmaîl Paşayê Amêdî ye. Jixwe di rêza serwêrên Amêdî de ji bo salên 1820-1842 wek mîrê dawîn vê herêmê navê Îsmaîl Paşa derbas dibe. Her wiha eyan e ku di wê heyamê de ji alîkî de gelek şerên navxwe yên di navbera Mihemed Paşayê Soran û herêma Bahdînan de diqewimîn û ji aliyê din de jî dewleta Osmaniyan êriş dibir ser herêmê.

Dr. Justin Perkins heyşt salan li Uramiyeyê maye û bîranînên xwe yên ji wê demê di sala 1843'an de di pirtûkekê de, li Emerîka çapkiriye, yên Alber L. Holladay jî di kovar û rojnameyên wê heyamê de hatine weşandin. Di derbarê van bîranînan de di hin rojnameyên li rojavayê gelek nûçe û şirove jî belav bûne û ew bi ser zimanên cûda jî hatine wergerandin û weşandin. Selîm Paşa ji van herdû emerîkayiyan re salix daye, wekî herêma wî ji gelek gund, bajar û kelehên Bahdînanê pêkt ê, li gelek deveran cihû û xiristiyan jî dijîn ku dostanî, dan û standina wî bi wan re pir baş bûye û ew girêdayî desthilatdariya wî bûne. Ji ber ku Perkins û Holladay geleki qedrê Selîm Paşa girtine û ew wek mirovekî aqilbend hesibandine, wan jî gelek caran di derbarê tevgerên dewletên rojavayê û ya Îran û Osmaniyan de, her wiha rewş û pêşeroja rohilata navîn de şîretên kêrhatî li wî kirine.

Holladay dinivîse ku têkilî û dostaniya Selîm Paşa bi rayedarên dewleta Îranê li Urmiyeyê gelek baş bûne. Ew di bîranînên xwe de salix dide ku di şênahiyeke li Urmiyeyê, ya ku walî û hemû mirovên dewletê tê de amade bûne, Selîm Paşa jî di merasîmê de li ser hespekî erebî û bi kincên bedew re beşdar bûye ku wî ji hemûyan zêdetir bala mirovan kişandiye. Justin Perkins jî ji bona roja 27'ê Gulana 1839'an de wiha dinivîse:

**Kurdê ku bi bejn û bala xwe, bi cil û bergên xwe yên kurdewar bala zana û alimên emerîkî dikşîne...**

"Em çûn seredana paşayê kurd. Ew mirovekî gelek zana ye û zilamekî pir bedew e. Taybetiyeke balkêş yê kincên wî kurdî firehiya milên kirasê wî ye. Ew di cihê ku digihêje ser zenda wî de ji mêtrekî heta mêtrek û nîvî ber e, ew bi vî awayî mirov dilfireh û di havînê de jî hênik dike. Me ji wî pirs kir, ka gelo ev milên fireh di dema şer û bezan de nabin asteng. Bêyî ku ew bi gotin bersîv bide, bi destê xwe bi carekê de milên kirasê xwe heta eniyan pêça, wisa ku em bi vî çelengiya wî ecêb man. Qumaşê kirasê paşa ji hevirmişeke bedew e û xeftana wî jî bi awakî gelek delal jî hevirmişê hatibû hûnandin. Ev cil û bergên wî, rabûn û runiştina wî û helwesta wî ya ku bi ahengeke ji awirên bi heybet û ji rûyê wî yê kaw û narincî pêkatî bi tevayî gelekî xweş bûbûn nîşana serbilindiyê."

Ev herdu dostên Selîm Paşa û hevalên wan biryar dane ku wêkêşê farisî ê ku gelekî navdar û di heman demê de li Urmiyeyê dima, bînin û wêneyeke wî bikêşînin, da ku ew wê bi xwe re bibin Emerîkayê û li dostên xwe nîşandin. Jixwe Perkins di pirtûka xwe de cîh dayê vê wêneyê.

Perkins dibêje, di roja 30'ê gulana 1839'an de dema Selîm Paşa hatiye seredana wan, beriya ku ew bikeve avahiya navenda wan bi demekê li hewş û baxçeyê de geriyaye. Kartolên di baxçeyê de gelekî bala wî kişandine. Ev cara yekê bûye ku wî kartol dîtiye û yek ji wan hildaye, bi kêra xwe sipî kiriye û parçek jê xweriye ku tama wê bicebirîne. Li Urmiyeyê kartol cara pêşin bi destê Perkins û hevalên wî hatine çandin. Mîrê kurd her wiha ji nav daran gulek qetandiye û bi gula di destê xwe de ketiye hundirê avahiya wan. Piştre bi daxwaziya Perkins mîr bi kêfxweşî sê saetan li hember wan runiştiye ji bona ku wêneyê wî bê amadekirin. Carina Perkins bi xwe jî alikayriya wênekêşê farisî kiriye. Lê ji ber ku wênkêşiya nexş û rewşa şaşika li serê mîr de ji bo wênekêşê farisî û Perkins dijwar bûye, mîr bi xwe pênûsa reş hildaye û ew para wêneyê bi destê xwe serrast kiriye. Perkins û wênekêş gelek matmayî mane ku, mîr çewa bi hostadî pênûs gerandiye û bi serfirazî wêneya nexşên egala li dor serê xwe kêşaye. Bi vî awayî ew wêne bi tevkariyeke bi dilxweşî û serfirazî ji aliyê wênekêşê farisî, Perkins û mîrê Amêdî de hatiye qedandin.

Justin Perkins di dawiya para nivîsa xwe ya di derbarê Selîm Paşayê Amêdî de qala ahengdariya qerektera mîr, kincên wî û gula di destê wî de dinivîse: "Ji bo hin kesên ku vê wêneyê bibînin û bêjin, kurdê hov û gul çewa li hev tên, dikarim bêjim ku li her derê dikarin kulîlk şîn bin, çewa li baxçeyên kulîlkan yên li Ewrûpa her wisa jî li deyştên hov yên Kurdistanê de jî gul şîn dibin. Qerektera kurd ne tenê ê cidiyet û şerkariyê ye, ew pê re her wisa aqilmendî û kubariyeke mirovhizî ye li hember mirovên ji her bawerî û miletî."

## Medya Tendurîstî derket

Danusandina kovara "Medya Tendurîstî" ya yekem a ku bi zaravayên kurmancî û soranî yên kurdî û tirkî hate weşandin, pêk hat. Civîna danusandinê li Cemiyeta Rojnamegerên Guneydogu hate lidarxistin. Gerînendeyê Giştî yê kovarê Ramazan Tunç û xwediyê îmtiyazê Lokman Aydogdu tevlî civînê bûn. Kovar ligel Bakurê Kurdistanê û Başûrê Kurdîstanê dê li bajarên Tirkiyeyê jî bê belavkirin. Di kovarê de roportajên bijîşkên pispor û nûçeyên derbarê tenduristiyê de cih girtin.

Di civîna danusandinê de Gerînendeyê Giştî yê Kovarê Ramazan Tunç axivî û diyar kir ku li gel qedexeya li ser zimanê kurdî, lê bi bexwedanekê zimanê kurdî hebûna xwe heya îro hat. Tunç, anî ziman ku êdî zimanê kurdî di her qada jiyanê de peşketiye û di qada cemawerî de jî hebûna xwe daye xuyakirin. Tunç da zanîn ku peşketina ziman bi berhemên ziman ve hatiye misogerkirin.






## Pîroziya defê di baweriya Ehlî Heq de



Di zikiran de ji bo muzîkê def tê bikaranîn û ji ber vê taybetiya xwe def pîroz tê dîtin. Ji ber pîroziya xwe def, di nav zikirvanan de tê gerandin, her kes destê xwe lê dixe û bi rêzê defê maç dikin. Di pîrozbahiyên cemî yên Ehlî Heq de, beşdarvan bi xelekî rûdinin û ya bi kemberek an jî bi potek bi hev ve têne girêdan. Bi vî awayî ji mirovên girêdayî teşeyek gilover derdikeve holê û hemû kesên bi zikran dikevin bi hev ve têne girêdan. Ev teşeyê glover ê zikirvanan dişibînin teşeyê defê û ev yek rola pîroziya defê ya di baweriya Ehlî Heq nîşan dide.

Di baweriya Ehlî Heq de niyazên "Muraqebat" bi muzîkê re têne strandin. Hin kesên ku di kêliya niyazan de ji xwe ve diçin û bi vê ruhiyetê dikarin bi ser sotikên agir ve biçin û agirê gur bi xwe bikin. Hinek derwêş tiştên balkêştir dikin. Wek nimûne: Bi dîsgotinî "la illahe ill'allah, la illahe ill'allah" diqîrin, şîşên hesinî di canê xwe de diçikînin, agir vedixwin. Hin kesên nexweş jî bi rêya defê têne tedawîkirin. Alimên Horesanî di heman demê de muzîkjenin jî û bawer dikin ku bi rêya muzîkê xwe digihînin sirên baweriyê. Kesên beşdarî cemê dikin, wisa bewer dikin ku bi rêya muzîkê ew xwe digihînin sira rastiyê. Ji hêla din ve yek jî peywira muzîkê jî bilindkirina nirxên manevî ye. Di baweriya Horesanê de rih bi rêya muzîkê neqlê Adem dibe.

## Def: Amûra resen ya muzîka kurdî

# Dengê zikr û sermestiyê

Aziz Tekin







Yek ji amûrên sereke yên ku kurd wek awaneya kevneşopiya xwe dibîne def e. Di qada civakî ya kurdan de def xwedî cihekî grîng e. Amûra ahenga şahiya civatan û dengê zikir û sermestiyê ye def. Di demên beriya ku kurd bi modernîzma hevdem têkildar nebûbûn de, di germa havînan de derwêş gund bi gund digeriyan û bi efsûniyeke veşartî tiliyên xwe yên ku ji def jentinê bûne şaraza, li gilovera ku di nav destên wan de diçû dihat dixistin. Ahenga dengê def û kilamên derwêşan nîşaneyên newayên kurahiya dîrokê bûn.

Ji bo meraqdarên defan me hewl da em ji hosteyên defan çêkirina defan guhdarî bikin. Geleo def çawa tê çêkirin? Alavên bingehîn ên defê tar û çermê ajalan e. Di van salên dawî de her çiqas di dewsa çerm de plastîk bê bikaranîn jî, bi dengê xwe defên plastîkî pir bê kêr in. Çermên ajalan yên ku ji bo defê têne amadekirin, ji bo xweş bişidin, di destpêkê de ya bi ava germ an jî li ber agir têne germkirin. Her çiqas çêkirina defên çermî ji yên plastîkî zehmettir be jî, yên çermî, bi dengên xwe bêhempa ne. Di hundirê tara defê de bi gloveriya defê li ser çerm xelekên têlî hene. Ev xelek bi lêdanên dest û tiliyên defjen û bi hejandina defê re dengekî nerm li nav rîtmên lêdanan belav dike. Bi lêdanan ev herdû deng bi hev şadibin.

Her çiqas hêsan xuya bike jî, ji ber hin taybetiyên defê hînbûn û bikaranîna wê pir zor e. Di defên ku niha têne çêkirin de piranî tenê aliyekî tarê ji çermê ajalan tê niximandin, lê belê di çavkaniyên dîrokî de xuya dike ku defên resen ji herdû aliyan ve jî bi çerm têne niximandin. Di lêkolînên arkeolojîk de hatiye piştrastkirin ku di demên qedîm de defên çargoşe jî hatine bikaranîn. Li gor lêkolînên li ser defê hatine kirin Def ji Mezopotamyayê bi ser bakurê Afrîkayê derbasî Spanyayê bûye, dû re wek tambour û basque ketiye nav mûzîka Ewropayê.

**Def, yek ji dengên mistîk e ku di dîwana derwêş û bawermendan de li koşeyê jorin hatiye hewandin û def, Kurdistanî ye.**

### Defjenên jin ên dema xwedawendan

Ku mirov bala xwe dide teşeyê defê, bêjinga arvan tê ber çavên mirov. Bêjing jî wek defê ji tareke gilover tê çêkirin û aliyekî wê girtî yek jî vekirî ye. Ger ku di nav def û bêjingê de pêwendiyek hebe dibe ku def jî wek bêjingê amûreke ku jin bikartînin be. Lewre niha def her çiqas wek amûreke mêran xuya bike jî, li gor lêkolînên dîroknasan di destpêkê de bêtir ji alî jinan ve hatiye bikaranîn. Defa ku ji bi serdema antîk bi şûn ve amûreke rîtuelî ye di peyker, nîgar û çavkaniyên niviskî de bi jinê re têkildar xuya dike. Di lêkeolînên arkeolojîk yên li Kurdistanê de xwedawendên bi def hatine dîtin hene û ev jî nîşan dide ku def hem amûreke pîroz e û hem jî perçeyeke jiyana mirovan e. Piştî ku ola Îslamê li Kurdistanê serdest dibe jin ji defê tê qewirandin, defjenî dikeve bin payana mêran û ev rewş hetanî îro jî wisa dom dike.

### Def: Amûra mûzîkê ya neteweyî

Tişta ku defê di nava kurdan de derdixe pêş ev e; def amûreke neteweyî ya kurdane û li tu cihekî din def lê wek defa ku kurd bikar tînin nayêne bikaranîn. Koka defjeniyê di nav kurdan de diçe beriya zerdeştiyê. Bi serdestiya Îslame re li Kurdistanê, weke hemû amûrên muzîkê def jî tê qedexekirin. Lê wek hin edet û baweriyên beriya mislimantiyê, bi hin guhertinên biçûk dikeve nav baweriya Îslamê jî. Wek hemû gelên din di nav kurdan de jî şopên beriya baweriya mislimantiyê têne dîtin. Ji ber ku di baweriya kurdan a beriya islamê de def xwedî bandoreke mezin bûye, piştî serdestiya islamê jî bandora defê berdewam kiriye. Di piraniya tarîqatên kurdan de def di zikr û ayînan de tê bikaranîn û cihekî giring digre lê def tenê di cîhê girtî de tê lêxistin. Derbarê reseniya defê de di nav kurdan de defjenê navdar ê navnetewî Husseyin Zahawî van agahiya dide me: Hemû gelên li dinyayê bi amûrên xwe yên taybet hene. Di muzîka kurdî de şêweya lêdanê xweser e û amûr jî her wiha resen in. Ev amûr li cem gelên din tune ne. Wek nimûne; di nav ereban de jî def heye lê defa wan li gor ya kurdan gelek cûda ye. Hem ji alî nexşandinê û hem jî ji alî bikaranînê ve cûda ye. Di nav kurdan de kevneşopiya defê bi feqî û derwêşan re destpêkirî ye. Her netewe xwedî amûrên xwe yên resen e. Kurd jî xwedî kevneşopiyeke pîroz a defê ne. Def li hemû parçeyên Kurdistanê tê bikaranîn."

Defjeniya ku niha li gellek bajarên Kurdistanê tê hînkirin, wisa xuya dike ku wê careke din vegere srdema xwe ya zêrîn!

## Bi pîvanên gerdûnî muzîka kurdî

**_Çima House Music? Fikra Kurdish House Music Projectê çawa çêbû, bi çi armancê hûn ketin nava vî karî û hêviyên we çiqas hatin cîh?_**

Bi rastî dema ku ciwanên me li derveyî welat mezin dibin, bi çand û jiyaneke xerîb mezin dibin. Dibin guhdarvanên muzîka MTV, VIVA. Gelek ji wan muzîka xwe ya bav û kalên xwe ji bîr dikin. Piştî çend mehên lêkolînê me biryar da ku ji bo ciwanên me rengekî house muzîka kurdî pêwîste. Rêngê House Music li Ewropa û Emrîka gelek tê hezkirin. Ji ber vê yekê, me bêrî çend salan konsepta Kurdish House Project nivîsî û bi alîkariya birêz Agirî Soran, -ku berpirsyarê KurdFM û Hêvî Group ye- me projeyên xwe hêdî hêdî anîn ser şaşe. Em dixwazin bêjin ku em jî dikarin muzîka xwe bikin muzîka cîhanî, ji ber ku muzîka kurdî gelek dewlemende û bi vê projeyê em dê dewlemendtir bikin. Strana yekem me çêkir ligel hunermendê kurd ku bi dimilî distire Yilmaz Çelîk bû. Strana wî "Weyve" gelek hate hezkirin û ecibandin. Piştî vê stranê me ligel gelek stranbêjan projeya xwe fireh kir û heta niha me 22 stranên Kurdish House Project çêkirine. Hunermendên ku alîkar bûne: Şivan Perwer, Hesen Şerîf, Ciwan Haco, Xêro Abbas, Koma Mizgîn, Hozan Dîno û gelekên dîn.




## Rênas Mîran

# Bo muzîkê rihê kurdî divê

**Azad Xanzade**

Rênas Mîran ê ku ji Başûrê Kurdistanê ji bajarê Hewlêrê ye di warê muzîka kurdî de xwedî xebat û afirîneriyeke mezin e. Jiyana wî ya li Habûrga Elmanyayê bi temamî din ava xebatên muzîkê de derbas dibe. Bi taybetî jî bi projeya xwe ya bi navê Kurdish House Project tê naskirin. Bi vê projeyê bi gelek hunermendên kurd yên wek Şivan Perwer, Hesen Şerîf, Hozan Dîno, Xêro Ebbas, Ciwan Haco, Koma Mizgîn, Rojan Delyar, Hejar Temo, Şener Yıldız, Jiyan, Demhat, Destan Doğan, Yılmaz Çelik, Gulê û Xalo re jî di tomarkirina dengan de xebat kiriye.

Mîran di medyaya sosyal de jî gelek aktîf e, bi vîdeoyên ciyawaz bi taybetî bala guhdarvanan dikşîne û niha ji li ser albûma xwe ya duyem ya Kurdish House Project û Dengbêj Project dixebite. Em bi Mîran re li ser muzîka kurdî û jiyana wî ya li dûrî welat axivîn.



**Mîran piştî Kurdish Hous Project, niha jî li ser projeya Dengbêj Hous dest bi xebatên xwe kiriye.**

**_Hûn muzîkên klasîk bi şêweyên Hause Musicê û bi vîdeoyên ciyawaz çê dikin. Hûn ji kurdan û ji kesên din bertek û şîroveyên çawa distînin?_**

Belê me çend stranên dengbêjî jî bi rengekî nû çêkiribûn û heta niha jî ew stran jî hatine ecibandin. Ji xwe ez heyrana stranên dengbêjiyê me, min berî çend heyvan kurte belge û muzîkfîlmek li ser stranên dengbêjiyê çêkir. Me di kesayet û hunera hunermendê hêja Delîl Dîlanar de beşa yekem ya vê projêyê pêk anî û bi dawî bû. Di vê projeya yekem de an jî beşa yekem ya projeya dengbêjiyê de me jiyana Delîl Dîlanar, zaroktiya wî, dengbêjiya Serhedê û hunera dengbêjiyê bi kurtayî girte şaşeya sînemayê. Ev belgefîlm heta niha me bes şandiye Festîvala Fîlmên Cîhanî ya Duhokê. Em dixwazin ji hemû festîvalên fîlmên kurdî re bişînin. Ev proje bi navê 'Dengbêj Project, short Documentation and Musicalfilm' tê naskirin.

**_Çi astengî li ber xebatên we hene; di warê belavkirin, danasîn û piştgiriyê de?_**

Bi rastî ji aliyê belavkirinê de alîkarî pêwîste, bo mînak me albuma Kurdish House Project çêkir, lê tenê li Başurê Kurdistanê hatiye belavkirin. Ji bo Bakûr gelek daxwaz û guhdarvan hene, lê jibo belav kirinê hinek pirsgirêk hene. Wekî din em dixwazin projeyên xwe mezintir û profesiyoneltir çêbikin, lê piştgiriyên me nînin. Ev klîb û muzîkên ku we dîtine û guh daye wan, tev jî min bixwe fînanse kirine. Em çiqas vî karî ji bo çand û hunera kurdî, ji bo ciwanên kurd bikin jî dîsan jî em bi tenê ne. Ji bo karekî wisa girîng yê ku em dikin tu alîkarî nayê kirin.

**_Hûn rewşa muzîka kurdî li çar perçeyan û li dîasporayê çawa dibînin?_**

Rewşa muzîka kurdî bi giştî başe. Ji derveyî Kurdistanê hunermend hene bi elêmentên modern û nûjen berhemên xwe çêdikin. Ji vî alî ve pêşketinek baş heye. Li Kurdistanê pêwîste hunermend zêdetir xwe bidin aliyê dengbêjên berê, da ku neyên ji bîrkirin. Bila nûjenî hebe, bes nûjenek çawa, ne em biçin wek stranên û muzîkên tirkan anjî ereban çêbikin. Ev ne pêşketin e û ne nûjenî ye, gerek mirov "rihê" kurdî ji bîr neke û girîngî bide vî rihî, di nav stranan de. Ji bo herçar perçeyên Kurdistanê jî ton maîster û ton teknîkên baş pêwîstin, ji vê aliye de hinek kêmasî hene. Ez hêvîdarim wê ew jî hêdî hêdî were derbaskirin.

**_Di rojên pêş de çi xebatên we hene, wê berdewamiya Kurdish House Music Project were?_**

Belê beriya 6 mehan min bi albûma duyem ya Kurdish House Project destpêkir. Di albûma duyem de, ez dixwazim zaraweyên soranî, dimilî û hewremanî bêhtir bînim pêş. Ji ber ku albûma yekem pirtir bi kurmancî bû. Wekê din ez dixwazim ji bo paşerojê belge û muzîkfîlma dirêj ya Dengbêj Project çêbikim. Ev proje bi rastî hinekî tevliheve, ji ber ku em dê di nava çend welatan de bikşînin. Emê li Rûsya destpêbikin û li gundên kurdan berdewam bikin. Li Azerbaycan, Ermenistan, Îsraîl û her çar perçeyên Kurdistanê . Ji bo vê projeyê em niha li sponsora digerin. Ez dixwazim vê projeyê bi taybetî jî ji bo rêz û hurmetgirtina dengbêjên me çêbikim. Diyar e ku emê salekê li ser vê projeyê kar bikin.